jimar: '78'
2019

Sernivîser:
Ebdilbaqî Huseynî
Derhêner:
Xorşîd Şûzî

Yekîtiya giştî a Nivîskar û Rojnamevanên Kurd li Sûriya



# PÊNÛSA NÛ

Damezrandin di 22 Nîsanê 2012

Mehane…Wêjeyî…Çandî…Rewşenbîrî…Serbixwe …..

**Nivîsara hejmarê**

## Di bîranîna 116 salîya ji dayik bûna Bavê netewa Kurd Melle Mustefa Barzanî de

### Ebdulbaqî Huseynî

"Zilma ku li milletê me hatiye, em lê agahdarin, ta bi nefsa dawî, emê li dijî setemkar şer bikin".

Bi van gotinan herdem Barzaniyê nemir civata xwe dixemiland.

Dîrok û xebata nemir Barzanî ji biçûk û meznan ve xuyaye, em çendî di derheqê vî mirovê payebilind bêjin kême, çimkî navê wî bi navê Tevgera rizgar kirina niştiman dîmoqratî Kurdistan ve hatiye girêdan. Ewî zêdî 50 salî xebat di ber milletê xwe de kiriye, û hîn jî xebata wî li ser destê Kak Mesûd, Nêçîrvan, Mesrûr û hogirên wî berdewame.

Gelên cîhanê tev bi navê kurd û kurdistanê di riya xebata nemir Melle M. Barzanî de naskirine, û bawerî pê anîne.

Barzaniyê mezin dîroka Kurdistanê bi tîpên zêrîn da nivîsandin, û eve diyare ne bes ji alî kurdan ve, lê ji alî dujminan jî ve. Çi kesê ku li ser nemir Barzanî nivîsandiye, hemîyan bi rengekî başbûn û positîv nivîsand, base xebata wî ya netewî kirine, basa exlaqên wî yê bilind kirine, basa mirovatiya wî ya bê sînor kirine.

Li vir ez hez dikim çend gotinên helbestvanê ereb (AlCewahirî) di derbarî Barzaniyê nemir de bixwînim;

باسم الأمين المصطفى من أمة ..... بحياته عند التخاذل تقسم



Ango, li cem milletê kurd dema nakokiyek çêdibêt, da ku li hev bên, bi heyata Barzanî sûnd dixwin.

Navê Barzanîyê nemir bi navê Kurdayetîyê hatiye gridan, û ana navê kurdan bi Barzaniyan tê xuyakirin. Û riya Barzanîzim tê şopandin.

Tê bîra min dema şoreşa Êlûnê lidarbû, di dema 1970î de, em kurdên Rojava bi dil û can ligel vê şoreşê bûn, me piştevaniya wê dikir, nûçeyên wê dişopandin, ji ber hezkirinek û baweriyek me bi Melle Mustefa Barazî ve hebû. Digel ku hikûmeta Sûriyê wê demê gelekî şofînî bû, û her tişt bo Kurdan qedexebû, lê meletê me di Rojavayî Kurdistanê de nemerdî nekirin, dest ji netewa xwe bernedan, çimkî hêvîyeke wanî mezin bi seydayê Barzanî û şoreşa wî ve dihat, û pêşerojeke bi ronî datanîn ber çavan. Û îro em dibînin bê çawa xebata Barzanîyê mezin bi xebata serok Mesûd û malbata wî berdewame, çawa sînorê Kurdistanê roj bi roj zelal dibe.

Xwendevano; di vê munasebeta pîroz de hez dikim bêjim, ku piraniya miletê kurd li ser rêça Barzaniyê nemir e, û xebata wî berdawem dikin, û li kêleka serok Masûd in, li dijî dujminên gelê kurd û peyên wan ji kesbazan ne.

Encama xebata malbata Berzaniyan hate diyarkirin di refrandomê de, ku 25.09.2017 li darket, û bû rojeke dîrokî bi gel kurd, ….. (Dûmahî R 2)

## Pênûsa Nû Û Finda Heştan..!

### Xorşîd Şûzî



Wek em tev dizanin ku gelê Kurd di jiyaneke zor û çewsandinê de jiyan bûye, herwekî çanda wî jî hatiye binerdekirin, çi ziman, çi tore û çi ragihandin. Û weku canê vî gelî ber bi alî azadiyê û bidestxistina mafên xwe bû, wilo jî çanda wî tîkoşîneke mezin kir, da ku ramanê xwe belû bike û dahênanên toreyî bide berçavan.

Ev ked di warê dahênanîyê de hate belû kirin di demeke dirêj de, ku mirovê rewşenbîr hewildaneke mezin bo vê kêşê kiriye. Li vir ezê serbora (Pênûsa Nû) rojnameya elektronî a ku Yekîtiya Giştî a Nivîskar û Rojnamevanên Kurd li Sûriya di 22.04.2012 de destpêkir, bikim nimûne, ku ew kesên ev kar berdewamkirin û hemî dema xwe danê, da ku meydana tore û çanda kurdî vala nemîne. Armanca van kesan ewbû, da ku nifşên nû D.R. 2)

## CEJNA NEWROZÊ – RASTÎYA DÎROKÎ, ÇAVKANÎYÊN BÎYANÎYAN Û GENGEŞÎYÊN LI DORA WAN!

### Ezîz ê Cewo



Hê jî di Kurdistanê da û li derveyî welêt di nava kurd û kurdistanîyan da pîrozbahîyên Newrozê bi dawî nebûne – serdema pîrozbahîyên sersala kurdî ya kevnar! Û, bi rastî, her çiqas, di dema xwe da hemû gelên Împêratorîya Medyayê jî ev cejn pîroz kirine, ew di nava hezarê salan da di nav wan da bûye wek kevneşopîyekê jî, lê belê ew pîrozkirina wan bi wate û naveroka xwe va ne wek ya kurdan e! Û ev kevneşopîya pîrozkirina vê sersalê jî rewşa pîrozkirina sersalê di Yekîtîya Sovêtê da tîne bîra mirov: (Dûmahî R. 3-4)

## Bîranîna 30 saliya Hunermend Mihemed Şêxo

### Cemîl Ibrahîm



Xuşk û birayên hêja, amadebûyên birêz

Ev dem û hemû demên we xweş û başbin

Em îro bi navê herdû Yekîtiyan, Yekîtiya giştî a Nivîskar û Rojnamevanên Kurd li Sûriya, û Yekîtiya Nivîskarên Kurdistana Sûriya, em bixêrhatina we dikin, û em gelekî sipasiya hatin û amadebûna we dikin; hûn hemû bixêr hatin vê simînara salvegera sîhemîn ya koçkirina dawî a hunermendê hêja û navdar Mihemed Şêxo , yê ko di roja 09.03.1989yan de çû ser dilovaniya xwe ….

Navê wî Mihemed Salihê Şêxmûsê Ehmede, ko bi navê Mihemed Şêxo hatiye naskirin û navdar bûye; di buhara sala 1948 de,…. (Dûmahî R. 2)

## Dûmahiya: Gotara sereke

ligel ku dewletên cîhanê careke din pişta xwe dane vîna gelê kurd, lê encama refrandomê dimîne belgeyeke bi nerx di pêşerojê de, xelkên me li Başûrî Kurdistanê dikarin di her demê de bikarbînin.

Hikmeta mezin li bal serok Mesûd Barazî hate diyarkirin, piştî pilanên dujmin û hin "Kurdên" xayin ku bajarê Kerkûkê dagîrkirin. Serok naskir ku pilana van kesan mezine, ji ber vî hawî hewildan da, ku Kurdistan û xelkên wê biparêze û nekeve xefka dujmin de.

Peymana ku vê dawiyê di navber PDK û YNK de çêbû, dîsa hikmeteke mezin têde heye, da ku Kurdistan û xelkên wê bêne parastin.

Em tev ligel siyaseta hikûmeta herêmêne, ku xebata xwe bo avakirina welatê xwe û jiyaneke xweş bo xelkên xwe berdewam be, çimkî çendî dujminên gelê kurd xurt bin, lê îradeya û vîna gelê me xurttire..

Dilovaniya Xwedê li canê nemir Melle Mustefa Barzanî be.

Sermedî bo şehîdên Kurdistanê

Bijî kurd, bijî Kurdistan

## Dûmahiya: Pênûsa Nû Û Finda Heştan!

sûdeyekê jê bigrin. "Pênûsa Nû" di riya ramanên xwe û destdanîna xwe di warê hizir û çandê de karîbû, gelek keleman derbasbike, û 83 mehên dijwar derbasbike û rojnameyê biparêze.

Pênûs bi herdû beşên xwe ve karîbû, hemî cûreyên tore û çandê himbêz bike, karîbû hemî pênûsên xêrxwaz bi alî xwe ve bikşîne, çi li herêmê, çi li cîhanê, herwiha gelek nivîskarên navdar jî ber bi Pênûsê de hatin. Ev balkêşbûn hişt ku Pênûs were navdarkirin, ku ev çavkaniyekek bo hemî nivîskaran, ku dikarî bû di çareçefa mafê mirovan û azadiyê û rûmetê bixebite.

Kî di naveroka Pênûsê de melevaniyê bike, wê zanibe çendî armancên vê rojnameyê baqijin û kûrin, ji ber armanca wê ji bo mirovatîyê ye, û ji bo nasnameya şaristaniye. Ji ber vî hawî ewê singa xwe ji karûbarên dahênanî û lêkolînan vekir, da ku gotar û lêkolîn û helbest û hevpeyvîn û huner tê de belavbibin.

Kêm caran mirov dikare rojnameyeke kurdî mîna Pênûsê di vî demî de bibîne, ev rojnameya ku bi hemî berhemên xwe ve hatiye nasîn, çi ji alîyî ramyarî de, çi ji alîyê dahênanî de, û çawa hizir û çandê bi hevdû re dirêse. Tiştê ku Pênûs pê radibe cihê şanaziyê ye, digel hemî astengên ku tê de derbasdibe, ji ber vî hawî herdem pirsa me eve; ka nûjenî li kuye? Vê pirsê li dûv xwe dihêle û kesên vê rojnameyê dişopîne dipirse; ka çi nû heye?!.

## Dûmahiya Bîranîna 30 saliya Hunermend Mihemed Şêxo

Li gundê Xecokê, nêzîkî bajarê Qamişlo jidayikbûye, û li dibistana gund xwendina seretayî xwendiye, di xwendina xwe de, di nav hevalên xwe de jîr û li pêşbû, û di wê navê re hînî Tembûrê bû, ji xwe re tembûr ji galon û têlên firêmên biskilêtan çêdikirin, lê piştre apê wî Hisên, ê ko xerat bû û li tembûrê jî dixist, jêre tembûrek çêkir, û ew çêtir hînî tembûrê kir; ji lawîniya xwe de nêzîkî bîr û ramanên komonîstan bû û bu wan re dida û distand ....

Di sala 1965an de, li bajarê Qamişlo dest bi xwendina orte kir, sala din nexweşiyek çavan lê peydabû, loma berçavk danîn; li Qamişlo herdem diçû li aheng û şevbuhêrkên hunermend Aram amade dibû; lê ji ber hejarî û desttengiyê nikarîbû xwendina xwe bibe serî, û bi malbata xwe re, li gundan, mijûlî kar û barên çandiniyê bû, û li gundê Xirbê Kurma Xelîlê Êzîdî û Hisênê Tewfo naskirin, û di aheng û şevbuhêrkên wan de beşdar dibû..

Di dawiya sala 1969an de çû Lubnanê, pêşî bi Seîd Yûsif û Şêrîn mela re ket koma Newroz, piştre bi Mehmûd Ezîz û Remdan Omerî re beşdarî di koma Serkewtin de kir, stianên xwe ên pêşî di ahengên wê komê de stira weke:

Gulîzar, Eman dilo, Hebs û zindan, Rabe ji xewê, Carek min dî gewrek, di baxan dîlberim sorgul... li Beyrûtê ahenga yekemîn di sala 1971an de li darxist; û piştre li peymangeha mûzîkê xwend û bû endamê Yekîtiya hunermendên Lubnanê, bi navê Mihemed Şêxo...

Di buhara sala 1972an de vegeriya Qamişlo, û bi alîkariya dostekî xwe li Rimêlan karkir, û koma mûzîkê sipartin wî, lê ji bo ko li ahengeke partiya Baas beşdar nebe, dest ji karê




Rimêlan gişî beşdar nebe, dest ji karê Rimêlan gişî berda, loma, gava li ahengan û li zemawendan distira, dezgehên parastin û asayişê li pey digeriyan, ew dixistin zindanê, êdî neçarbû di heman salê de çû bexdayê, û li wir, li îzgeya Kurdî hejmarek din ji stiranên tomarkirin ... ji wir berê xwe da Kurdistanê, û serdana serkirdeyê gelê Kurd, rêberê Şoreşa Êlûlê, Mela Mustefa Barzanî kir, ê ko pêşwaziyek lêkir û ew bi xelatkir; êdî li Kurdistanê hemûyî gelekî navdarbû û dengê wî derbasî mala her Kurdekî bû, gelek stiranên nuh li wir stiran ...

Piştî ko vegeriya Qamişlo, û di havîna sala 1974an de, hêzên parastin û asayişê gelk guvaş li ser kirin, û gelek astengî jêre çêdikirin, gelek caran ew digirtin û ew gelkî eşkence dikirin, loma di payizî de biryra xwe da ko veger nav rêza pêşmergeyên şoreşa kurdistanê, û bû yek ji hunermendên îzgeya şoreşê, lê piştî lihevhatina şeşê Adarê, ew jî bi pêşmergeyan û serkirdayetiya şoreşê re çû Îranê, û li wir kasêta xwe ya yekemîn li bajarê Mehabad tomar kir, ji ber wilo Savak ew girtin û jê xwestin ko vê kasêtê belavneke, lê Mihemed Şêxo bi ya wan nekir, loma wan ew surgûnî bajarê Kunbidkawis ser bi herêma Mazindan kirin, li bakurî Îranê, li wir weke mamosteyê mûzîkê û zimanê Erebî karkir, û her li wir keça pêşmergeyekî Qadî Mihemed naskir, ko ew jî ji zûde surgûnî wêderê bûbûn, jê hezkir, û bû hevjîna wî, keçek û du kur ji wan re çêbûn: Felek, Ibrahîm, û Birûsk; li Îranê bêtirî pênc kasêtan tomarkirin û belavkirin; ji ber guvaş û tengasiyên hêzên parastin û asayişê, û du caran kirin ko wî bikujin, neçar bû ji wir derkeve, û vegere Sûriye, û di serê sala 1983yan de gîhaşte Qamişlo, ko xelk û cemawerê hezkiriyê wî pêşwaziyek germ û gurr lêkirin ....

Ji ber hejarî û desttengiyê, Mihemed Şêxo neçarbû ko di salên 1984-1986an de, di aheng û zemawendan de bistirê, piştre dikaneke biçûk, bi navê tomargeha Felek, vekir, lê piştî du mehan, hêzên esayişê ew û birayê wî Behaa girtin bi behaneya ko kasêtên ne destûrdayî difroşin, ew piştî heftiyekî berdan, lê hemû kelûpelên dikanê birin, dikan jî bi mûmên sor girtin, û nehiştin ko ji nûve veke ....

Di roja 06.03.1989, bi nexweşiya dil ket, û kirîzeke xurt lê peydabû, berebeyaniya roja 09.03.1989, çû ser dilovaniya xwe, û bi xekcarî ji nav me koçkir û çû

Erê ew çû lê dengê wî di nav gelê wî de ma, û cihê xwe di dilê her Kurdekî de çêkir; Mihemed Şêxo 14 albomên stiranan li pey xwe hiştin, ji helbestên gelek helbestanan stiraye, weke: Cegerxwî, Namî, Tîrêj, Bêbuhar, Umerê Lealê, Ferhadê Içmo, mustefa Etrûşî, Sebrî Botanî, Xelefê Zêbarî, û gelekên din ....

Xwedê wî bi dilovaniya xwe şabike, cihê wî buhişt be, û serê hemû malbata wî û serê gelê Kurd saxbe.

Yekîtiya giştî a Nivîskar û Rojnamevanên Kurd li Sûriya, û Yekîtiya Nivîskarên Kurdistana Sûriya

Essen, 06.03.2019



# Dûmahiya CEJNA NEWROZÊ – RASTÎYA DÎROKÎ,..... Ezîz Cewo

Çima?

Û bersiva vê pirsê jî bi rastîya vê cejnê va girêdahî ye – ew cejn a kurdî ye, û her çiqas, ewê bi bûyereke dîrokî va girê didin, ewê ji bo kurdan wek cejneke çarenûsî dihejmêrin, lê belê, dibe ku dîroka wê kevntir be jî, di nava kurdan da ew cejn bi rehên xwe va berbi kûrahîya hezarên salan va jî diçe ... Û, dibe ku, her paşê, dema di bin rêberîya Kavî Vîştaspayê padişahê Medyayê (Kîaksar) da dawî bi desthilatdarîya Dehakê zulmkar anîne, wate û naverokeke nû didin vê cejna xwe ya kevnar?! Û, dibe ku, rûxandina desthilatdarîya zulmê ya Dehak hema di rojên Cejna Newrozê da pêkhatye?...

Û hebûna şêwazên cihêreng ên vê cejna netewî di nav civakên cuda yên ayînî-netewî yên kurdî da jî, dibe ku, hema govenîya vê yekê ne?! Lêbelê, di çavkanîyên bîyanî da li ser vê Cejnê hinek nirxandinê cuda hene.

Dibe ku lewra jî, bi sedemên cuda di nav kurdan da gengeşîyek derdikeve holê – rastîya vê olê destpêka xwe ji ku digire? Û ev pirsa jî hema ji hêla hinek mitaledarên kurd va hatine govtûgokirin û nirxandin.

Û, ji ber ku ji wan govtûgoyan her tenê du gotarên bi zimanê kurdî yên du mitaledarên kurd li ber destê min hene, lewra jî dîtina min a di derbarê wan gengeşîyan da, dê li ser bingeha wan herdu gotaran tomar dibe…

Her çiqas di derbarê gotara rêzdar Fêrgîn Melîk Aykoç a "Gengeşîya li ser rastîya Newrozê berfireh dibe!" da (http://yeniozgurpolitika.net/gengesiya-li-ser-rastiya-newroze-berfireh-dibe/?fbclid=IwAR2wFkB8rHU6yBsVSBHmzyqLHkZ-iUWrYrpV4em5kdNJr4D0uej7iDc54ZQ ) min nêrîneke giştî anîye zimên jî (http://www. amidakurd. org /ku/tekst/Newroz_ Fird ewsî_û_ nirxandinek ), lê ezê li vira, vê carê wek têbînîyekê li ser kontsêpta nirxandinên wê gotarê jî rawestim. Kekê Fêrgîn bi bingehîn nirxandinên xwe yên zanistî li ser wê rewşa heyî, bingehên lêpovajîkirina dîroka vê cejinê pêk tîne û destnîşan dike, ku: "... Herodot, Ksitas von Kindos û di çavkaniyên Asûran de navê Newroza ku têkiliya xwe bi Kurdan, yan jî bi navê kevn ên Medan re heye, derbaz nabe. Lê em dizanin di baweriya Mardûk de du pîrozbahiyên girîng hene.

Têkiliya van pîrozbahîyan bi gera rojê re heye. Ev di nava gelên Arî yên ku wê demê xwedan baweriya (Mîtra) de jî wek cejna bawerîyê tê pîrozkirin. Yek şeva Yelda (dagera rojê), Cejna Êzî û yek jî destpêka meha nûvejînê ango Newroz û Çarşemiya Sor e..." – Piştî vê ew bi dane û argûmanên heşmendî nepêkanîya vê nêrînê diyar dike, balê dikişîne ser hinek lêgerînên hinek nivîskarên kurd ên di vî warî da, êkskûrseke dîrokî pêk tîne û gotina xwe lêgerînî bi heşmendî bi wate û naveroka wê cejna netewî ya rojên me va

tomar dike: "Rastiya demjiyana me jî ev e; ew jî Newroz bi berzbûna tekoşîna Tevgera Azadî û bi çalakiya Mazlûm Dogan, Zekiye, Rahşan û Semayan wateya xwe ya hemdemî wergirtiye. Êdî ew li tevahiya cihanê wek cejn û roja serhildana Kurd hatiye pejirandin".

Gotara duyem a rêzdar Mahabad Felat a "NEWROZ" e, û di wê da nêrîn û dîtinên balkêş hene, yên ku hêjayî baldarîyê ne (**http://www.** Amida kurd. org/ku/tekst/ N_E_W_R_O_Z ). Lewra jî, berî ku ez derbasî mabesta xwe ya sereke bibim, ezê li ser hinek dîtinên wê gotarê rawestim, wek helwesteke ramanî ya balkêş. Her çiqas di vê gotarê da jî qala Ferdûsî û vegotina Newrozê ya di "Şahname"ya wî da tê kirin, lê belê ya sereke, wek ku di vê gotarê da tê xuyan, xudanê gotarê têgihîştina xwe ya bingeha kevneşopîyên gelan a çandî-rewanî bi şêwazekî têgihîştina heşmendî tomar dike: "Jiyana gelan li ser çi rastiyên tevgerên xwezayî û cografîk teşe girtibe, çîrokên wî gelî jî li gor wê afirîne. Loma ku ew çîrok di nav xwe de kodên civakê dihewînin..." – Û, dibe ku hema eva jî bûye kilîta bersîvên wan pirsan, ên ku wisa netavetîyê didin kekê Mahabad (û ne tenê wî). Û ji wir û pêva jî di vê gotarê da jî hewl tê dayîn, ku nepêkanîya kontsêpta çîrokên bîyanî yan, bi taybet jî, ya Ferdoûsîyê helbestvanê fars ê sedsalên X – XI, derxe holê... Lê, ji ber ku di nirxandina xwe ya li ser gotara kekê Fêrgîn Melîk Aykoç da min hinek danayên dîrokî û nirxandinên xwe li ser vê mijarê anîne (jêder li jorê ye!), lewra jî ezê li vira wan dubanre nekim...

Helbet, mirov li vira her dikre bibêje, ku ravekirina van nerastîyên dîrokî hem mafekî bîrewarî yê her mitaledarekî ye, hem jî ya pêkanîna erka derxistina rastîyên dîrokî ye... Û her bi pêkanîna van maf û erkan jî mirovê bikaribe di warê lêgerînên dîrokî da bigihîje encancamên pêwîst... Lewra jî, ev lêgerînîn û yên dinê, yên ku di van gotaran da behsa wan tê kirin, xwedî nirxne hêja ne û dê ji bo ronîkirina rastîyên dîrokî bibin beşekî bigeha zanistî ya lêgerînên pêşerojê...

Belê, ev nêrîn û nirxandin pir girîng in, lê belê, eger mirov nirxandinên xwe tenê di vê govekê da pêkbîne, bi van bi sînor bike, ewê kêm bimînin. Lewra jî, wek ku bi min va tê xuyan, divê mirov, dema lêgerînan pêk tîne, wisa jî wan rastîyan li ber çav bigire, yên ku di nava çand, wêjeya zarkî û kevneşopîyên gelê me da hatine parastin. Û li vira jî ya sereke ew e, ku dema mirov pirs û bûyerên dîrokî dinirxîne, wan nirxandinan di nava merc û rastîyên wê serdema dîrokî da pêkbîne, dema ku ew pêk bîne.

Û li ser vê bingehê divê bê zanîn, ku rastîyek li holê ye: piştî zêdetirî hezar û pênsed salî Ferdoûsî dê dîmenên Cejna Newrozê di "Şahnameya" xwe da wisa vebigota û bi wêjeyî binitiranda, wek ku êdî di nava civaka wan a wê demê da bibûye kevneşopîyekê û hatibûye pejirandin. Û di nava wan da jî hemû agahîyên lêpovajî û tewş êdî ji Qurûşê padşahê farsan ê yekem destpê bûne, û bûne kevneşopîyekê. Ango, Ferdoûsî tiştek ji ber xwe dernexistye. Hê hezar û pênced sal berî wî hemû dîroka Medyayê (= a gelê kurd) hatibûye lêpovajîkirin. Hê di wê demê da, dema Qurûşê nevîyê Îştûvêgûyê

padşahê Medyayê yê dawîyê (Astîag) amadekarîyên xwe dike, ji bo ku bikaribe kalkê xwe ji ser text bavêje, ew di derbarê wî da hezar û yek şer û şiltaxên nebûyî û nebînayî di derbarê wî da di nav gel da dide belavkirine, û peyra jî ev têknolojîyên gemar di hemû warê dîroka gelê me da tên bikaranînin, lewra ku dîroka wan her li ser tunekirina dîroka me dikaribû hebûya. (dîsa li xala 5. a beşê Duyem ê pirtûka "Zerdeşt pêxember (rûpelên dîroka "windabûyî"...)" binhêrin – rûpel 41 –51– **https:// www. academia.edu/38211603/ ZERDEŞT_ PÊXEMBER_ RÛPELÊN_ DÎROKA _WINDABÛYÎ_..._** ).

Ango, Ferdûsî bi serê xwe ne çavkanîya lêpovajîkirina dîroka kurd e, ew bi xwe jî di nav wê dîroka lêp û tewş da wek kesayetî û helbestvan pêkhatiye, û dibe ku, ew hîç hay ji dîroka rasatîn a Newrozê nînbûye jî!

Dîtineke weha çira girîng e? – *Ya yekem*, ji bo zanebûna rastîya dîrokî, û, *ya duyem* jî, ji bo wê, ku mirov wan 1500 salên berî Ferdûsî ji hesaban neavêje... Û ji ber van sedeman jî, lêgerînên di vî warî da divê ji dema Qurûş va bên destpêkirin, ji bo ku em rastîya dîrokî derxin ronahîyê ... dest pêkirin, ji bo ku em rastîya dîrokî derxin ronahîyê...

Ev wek prênsîp, ji bo ronîkirina pirsa lêpovajîkirina dîrokê!

Naha em bên ser bingehên netewî yên vê pirsê, yên ku bi tu awahî, bi tu lêpovajîkirinan, tevkujî û bişavtinan jî dagerkaran nikaribûne bên rabikin û tunebikin.

Eger mirov bi heşmendîyeke zanistî pirsê binirxîne, divê di sêrî da bingehên hemû pirsan di nava gelê kurd bi xwe da bigere. Divê bê zanîn, ku naha di nava civakên *kurdên elewî, yarasanî, êzdî* û yên dinê da jî şopên cejna Newrozê bi şêwazên xwe yên cuda va hatine parastin. Li vira pirs di wê da ye, ka, gelo em çiqasî amade ne, wan şopan bibînin. Û, eger lêgerînên me yên di vî warî da di nava kevneşopî û zargotina van civakan da bi zanistî pêk neyên, dê hemû gotin, nivîs û rexneyên me li ser lêpovajîkirina dîroka Newrozê kêm û yekalî bimînin...

Li vira min dixwest, ku bal bikişanda ser kevneşopîyên sersala kurdî di nava kurdên êzdî da – bi şêwazê wêyî "Kuloça sersalê" va! Bala xwe bidinê, her çiqas di bin bandora hewa îslamî da, ya ku ji xwe piştî êrîşên Ummer bên Xettab ên li ser Kurdistanê êdî hebûye, piştî hatian Sîxadî (Şêx Adî) a nava êzdîyan, bi berekê va kirasê sofîtîya îslamî li stûyê êzdîtîyê danîne jî, ew kirine wek tarîqeteke sofîyên îslamî (di vê derbarê da, bi hûrbînî – http:// www.amidakurd.org/ku/tekst/çima _divê_yên_êzdî_bibin_êzdî_ sofî_û_ êzdîtî_bê_t_unekirin_û_ji_holê_r_ abe) lê dîsa jî, ev şêwazê sersala kurdî, wek "Kuloça sersalê" û gelek tiştên din ên bi wê ra pêwendîdar, hatine parastin. Û, her çiqas xwestine û hewl dane (û ew hewlana îro jî didomin!) bi rêya sofî Îslamîkirina êzdîtîyê şêwazên wan kevneşopîyan biguhêrin jî, lê, yek e, gelek tişt hatine parastin...

Eger tê bîra xwendevanên hêja, hê 15 sal berê di gotara xwe ya "Êzdîtî. Çend raman û nêrîn li ser rastîya vê ola kevnar, rewşa wê ya îro, nexwendîtîya olî ya di nav me da û leyîstokên siyasî" da min di derbarê Kuloça sersalê da weha nivîsî bû:

"... Lê Kuloça sersalê? Ev jî hema-hema diket dema ku şev û roj weke hev dibûn – dema sersala kurdî ya netewî – Newrozê. Wan rojan li fêza

## Dûmahiya: gotara Ezîz Cewo

li fêza gundê me – li Davanê berfînek derdiket – ne wek kulîlkên berfê yên din bû – bejna wê bilind bû, serê wê wek ku zengilekî lêvên wî tîş-tîşî bibin û paşva zivirîbin- vajî bibûn, wek pelên serbixwe. Rengê wan sût bû. Eger tê bîra xwendevanên hêja, hê 15 sal berê di gotara xwe ya "Êzdîtî. Çend raman û nêrîn li ser rastîya vê ola kevnar, rewşa wê ya îro, nexwendîtîya olî ya di nav me da û leyîstokên siyasî" da min di derbarê Kuloça sersalê da weha nivîsî bû: "... Lê Kuloça sersalê?

Ev jî hema-hema diket dema ku şev û roj weke hev dibûn – dema sersala kurdî ya netewî – Newrozê. Wan rojan li fêza gundê me – li Davanê berfînek derdiket – ne wek kulîlkên berfê yên din bû – bejna wê bilind bû, serê wê wek ku zengilekî lêvên wî tîş-tîşî bibin û paşva zivirîbin- vajî bibûn, wek pelên serbixwe. Rengê wan sût bû.

Û di navenda her pelekî tûdirêjkî ra kêleke zerê vekirî (qîçik) derbas dibû – teyê bigota yekî ta û derzî hildaye û ew kêl daye... Û hûn dizanin navê vê berfînê çi bû? – Newroz! Berfîna sersalê, mizgînîya biharê – Newroz – Newroza delal! Lê dema ku kuloç ker dikirin?! Her we bidîta, em- zarok çawa li dorê dicivîyan, me çît digirt, û bê sebir hêvîyê bûn, ka wê morîyê para kê bikeve. Mezinê malê jî, – demekê kalkê min, lê paşê jî bavê min, kuloç ker dikir û ji bîna petinî û temtîskan hewayê li ber bêvila me fûrdida û dengê mezinê malê guhê me dihingavt: "Ev para Mêrê Rojê, ev para Xudanê Malê, ev para Zîyayê zer, ev para Mamereşan, ev para Mamê Şivan, ev para Gavanê Zerzan, ev para Xeta cot, ev para malxwê malê, ev Û, hûn dizanin, dibe ku ev berfîn a bi navê Newroz di nava kurdên êzdî da jî êdî hatye jibîrkirin, lewra ku ew bi demê ra êdî kirine êzîdî û bêhtir ji rehên xwe yên netewî hatine dûrxistin... Û ya balkêş ew e, ku ev berfîna bi navê xwe yê Newroz va her di nava kurdên êzdî yên gundê me – Sîpanê (Pampa kurdan a berê) û yên gundê cînar Avşênê (Çobanmaza berê) da bi wî navê xwe va hatiye parastin.




Balkêş e, ne? Û li vira jî dibe ku hinek bipirsin: "Çima hema di herdu gundan da?"

Ji bo vê jî her bersivek heye: "Ew ji ber wê ye, ku êzdîyên van herdu gundan hê di dawîya sedsala XVII – destpêka sedsala XVIII ji ber zor û zulma Roma reş bi neçarî welatê xwe terikandine û hatine, li van deveran cî bûne. Wek ku tê xuyan, wê demê sîstêma sofîtîya îslamê hê xwe bi wan ra negîhandibûye..."

Divê bê zanîn, her çiqas dem hatine guhartin, bi taybet jî van 25 – 30 salên dawîyê hewlên heya dawîyê îslamîkirina êzdîyan bi biryar didome jî, lê, yek e, ev kevneşopîya netewî di nav wan da hê jî li ber xwe dide... Û, ka, gelo ewê heya kengê bikaribe li ber xwe bide, ev jî bi serê xwe mijara axavtineke dinê ye?!

Di vê rewşê da mirov dikare çi bibêje? Bi dîtina min emê her wê demê bikaribin heya dawîyê rûpelên dêroka xwe yên lêpovajîkirî an windakirî derxin ronahîyê, eger bi lêgerînên çavkanîyên bîyanîyan ra tevayî wisa jî bingehên dîroka xwe di nava kevneşopîyên xwe yên netewî û zargotina xwe ya bêhempa û nebînayî da bigerin – bi zanistî, derem bi derem binirxînin, wan ji toz û xubara demê û paxs û gemara bîyanîyan paqij bikin û li gelê xwe vegerînin...

Bi vî awahî emê bikaribin hewlên hezarê salan ên dagerkeran ên lêpovajîkirina dîroka me vala derxin!

# Dilê bê war

Ji giyanê bavê min (Mele Brehîm ê Girbawî) re, ku di roja 14-03-2019 çil roj di ser oxirkirina wî re derbas dibin.

## Bêwar Brahîm

De bêje dilo, bêje û binehwirîne bavêje ser min, xwe û sêwîtiya welatên bê kes, bê xwedî, bê cih û bê war. Keder û kovanên me sêwî û bê waran bûne çiyarêzên serhişk û pola. Mane xewna me yekbû û riya me yekbû, hêvî û xweziyên me yekbûn..Lê van çiyarêz û kovanên bê mehder û bê dilovanî em ji hev tar û mar kirin. Kes ne li hebûna me û ne jî li tinebûna me napirse, her kes berpirseyarê berjewendiyên parastina serhed û sînorên xwe ye. Lê em bê sînor û serhedin, welatê bêxwedî mîna malê talnakirinê ye wey li wî yê guhekî ji xwe re birevîne.

Waaa yabooo, te min di sênga welatekî sêwî de, li ber destên sêwiyên çolistanan hişt û tu çû. Te min li ser lawikbûn û lawîniyê xwedîkir û mezinkir, te eşqa vî welatî di can û dilê min çand... Lê rojekê te ne got ev welatekî bêxwediye, bê zêr û bê zore, xakeka windayî û nebediye te ew di çavê me de kirbû buhiştekа ebedî. Em bi koranî dilketin vê buhuştê û bi koranî me da ser şopa te û gera li buhuştê, em bi hev re winda dibûn em rastî hev dibûn, em dîsa windabûn û dîsa me hev didît, dema te westan li ser pêkên gera me didît te bi sirt digot:

- Ku hûn ji vê gerê biwestin an hûn ji rêka min derkevin ez ê xwe ji we bêrî bikim.

Waaa yabooo, te ji min re negotibû em ê rastî dilên reş, riyên reş, duxmiya zikreş û çavsoriya kulibî di vê gera xwe de bibin. Cengê werzên çandin û çinînê ji xwe re bir, em dest vala mane ne çandin û ne çinîn, bi tenê em palane û ji xwediyên berjewendiyên mezin re palatiyê dikin. Buhişta em lê digeriyan di nav rewrewk û leylanê de roj bi roj dûrdikeve. Patexurên çolistanan bûne semyan û selefên siwarên mêrên dewrê berê mane mêvan li vî welatî.

De bêje dilo û binehwirîne , fîxana bazên birîndar di azmanên dûmangirtî de lal dibe. Serma xwe ji hinavên birîndar bernade û qêrînên lerzok ji dilên sêwî dernakevin. Em bê serdar û bê semyanin dilo, kevirên caran gindirîn binê newlalan û kevrên newalan hilkişyan serê caran. Barê wefadariya Kurdîniyê pir girane û ya jê girantir barê parastina sinc, dab û nerîtên berê ye, lê girantirîn bar ew e parastina lawînî û mêraniyê ji redestiya li ber lingên van rojên kirêt û bê şerem û ya ji her tiştî girantir ku ev parastin ji me jinan bê xwestin.

Ceng rehmê nake Yabooo, qey te zanîbû wê ev cenga malwêran bi salan agirê xwe li ser sênga welatê me vêxistî bihêle? Te zanîbû wê ev welat ji mêran vala bibe? Wê xortên malan winda bibin, ev xortên şêrîn û bengî... an şehîdn an noqbûyî ne an revendin? Konên mirinê vegirtî mane riya çûnê winda kirine, li şûna govend û dîlanan, şahî û şadûmaniyan duwa qêrînên bê mirad sênga azman diqelişîne. Berî cengê Qamişlo ji şahiyan vala nedibû ku binive, kêlîka ku xilmaş dibû ciwaniya dilşadiyê gulav bi ser de dibarand û xilmaşiya wê dikir ken û lîlandin lêêê...Îro lîlandinên kêfê dane pey darbestên mirinê û biriqîna lêvên kenok vemiriye, lêv ji şorahiya hêsran zuhabûne û terikîne. Vê cengê hişt ku xortên malan revend û ji hev belav bibin, revendiya xortan hişt tu neçar bibe û ji min re bêje (xortê mala min tu mayî).

De bêje dilo, ev keça ku maye xortê malê di bin agirê vê cenga har û dijwar de û mîratê bavekî weka ( Mele Brehîm ê Girbawî Bavê Xorşîd) wê çawa piştrast bimîne? Tu Bavê Xurşîd ê ku me xêr ji ciwaniya wî ne dît û em bi govenda wî dilşad nebûn, Xurşîd ê ku hê kesî li devera me nizanîbû bêje ez Kurd im û Kurdînî qedexe bû te navê wî kir Xurşîd. Xurşîd ê me jî mîna Kurdîniya me bê mirad bû Yabooo, zû oxra xwe xwest û çû hingê dem Adar bû pişta xwe da jiyanê û berê xwe da mirinê, piştî sê salan ji çûna wî ez ê nû li xwe mukur bêm ku min elbûma wêneyên wî bi dizî derdixist û li wan wêneyên bi delaliyê dagirtî mêze dikir ez bi wan re dipeyivîm, ev bi xortên gund re ye, ev li Şam ê ye, ev li ber ava mezin bi Hoşeng re ye, ev li bajarê Derra ye ku xwendina xwe li wir qedand... û têra ku mirin jê têr bibe ez digriyam û kêlîka ez li te, dê û xuşkên xwe vedigeriyam ez dîsa vedigeriyam xortê mala te û min bi dengekî mêrane digot, elbûm asêne ez bi ser wan venebûm. Berî oxirê te rojên sibatê dihejmartin, te digot wê kengî 10 ê Adarê bê ku em berê xwe bidim gund? Min ji te re digot, yabo heke te bêriya gund kiribe em ê niha herin? Te digot naaa lawooo çûna niha bê tam û bê çêje, lê di Adarê de wê çavê birayê te li devê riya çûna me be, sebir başe. Lêêê... te ez xapandim yabooo, sebra te bihin tengbû, tu li benda hatina Adarê nema, te berê xwe da navbera gir û goristana Girbawî û te pala xwe pala Xurşîd.

Waaa yabooo, azmanê vê zivistanê sergirtîbû rojê tîrêjên xwe li ser xakê belav nekir, bi tenê di roja xatirxwestina te de azman dergehê xwe li pêşiya rojê vekir û tîrêjên wê xwe li ser sênga rojên behîdariya te raxistin. Şevên zivistanê dirêjbûn Yabooo, berbang dûre û birîn kalîn û nalînên xwe li hev dihûnin, dikin werîs û rojên me yên xilmaşbûyî sêdare dikin. Çûna te hişt ku serma derbasî hundurê hestiyên min bibe.

Min sare Yabooo, ku germa havînê bi xwe jî bi ser min de bê ev serma ji hinavê min dernakve. Incex himbêza te min germ bike, incex destê te tiliyên min yên lerzok germ bikin. Niha ev tiliyên min sebra xwe bi tizbiya te a reşî sih lib û hûrik tîne û xwe bi şûna tiliyên te germ dikin. Ez ê lav û recekara Xwedayê mezin bim ku min û te li wê dunyayê careka din bi hev re bicivîne, ez ê niha sebra xwe bi bêrîkirina te bi sebir bikin û ta dûmahiya jiyana min her wê çavên bendewariya min lavakarên Xwedayê mezin û dilovan bin ku careka din li wê dunyayê em hev bibînin û ti car û ti car ji hevaltiya te bê par nemînim.

07-03-2019

# Vejîna di Geliyên çiyan de

Nizar Yosif



Şêwekar û nivîskar ê hêja Yehya Silo çawa kêferata vejînê ji geliyên çiyan, di Roman a xwe de, di de nasîn?

Dema navê çiya yê Herekol li ber çavên mirov dikeve, yan jî bi guh di bihîze,di heman demê de koçerî û rêwîtiya Zivistan û Havînan û Zozan û bane û baneyî têne bîra mirov. Tevlî dîmen û dîdarên sirûşt a bijon, û azadiya xwezayî ya bê sînor, ya mirov û Sewalên wan, ber çavan re weko tablûyekê derbas dibe. Efsaneyên Bab û Babîran û Pîrikan, ji me re gotin û reng kirin, mirov hema pê re dikeve nava zozan ên Herekol ê Mîran, û gelî û newal û kop evrazên û behişt a wî, û pê re dijît.

Nivîskar Yehya Silo di vê romanê de(Vejîna di Geliyên çiyan de), bi ciwanî û bûyerên li çiyayê Herkol ê re, me li nava xwezaya kurdistanê di gerînê û di de nasîn. Di nava xweşî û asêbûna vê xwezayê re şehitandina civaka kurd biwêj dike, hejarî û pirîşanî û rola paşketina civakê,û nakokiyên di nava lehing û kesayetiyên Romanê de, di rûdawan de, li ber çavan datîne.

Roman bi awayek rehet û nerm, ji xwêneran re daye nivîsandin. Zemîn û jiyana kurdan ya rojane zelal dike, weko her nivîskarekî rasteqîniyê û hunera wêjeyî, li hev suwar dike, di vê diramayê de hewl daye, giyanê kurdayetî û exlaq û çanda wî bide nasîn.




Di nava bûyer û axaftin ên kesan re, ji aliyekê pîstûrî ya dewlata Tirkan û çeteyên wê, û zordestiya gelek destekên wan, ji ax a û kesebazan, û ji aliyê din rewşa paşketina civakê, li bakûrê kurdistanê û nakokiyên di nava herdu aliyan de, tevlîhevî û şehitandin diyar dibin.

Xwêner xwesteka nivîskar tê digihe, di guhertinê hişyarbûnê yên ku bi (Hemo) re çêbûyîn, û xwestekên wî yên ku şoreşê bi xwe re anîn, û kesayetiya gundiyek sade, şivan ê dîn ( Dîko),berz dibin.

Roman di navbera kêşûvekêşa civakî,netewî, û ramyariya Îdyolojî de, bi konevaniyê ve girê di de.

Bi gropa Girîla û hatina parêzerên gundan( Çete ) re, di de nîşandan, ango şêwazên xebata şoreşvanan bi gel re, zehfbûna parêzerên gundan( Çete ), bi awayek zindî me datîne li ber kuştin û gorîdanên kurdan. Jiyana hejarî û delîvên ajotinê yên kêm, Gundên asê , bi suwariya Dewaran û Traktora kevnar! Ji hemî sinifên milet.

Yehya Silo girêdana nifşên nû bi netewa wan ve, bi taybet kesên ji parçeyên kurdistan yên corbicor hatin, û tevlî Girîla bûyîn, bi têkilheviya sîkolojî ve, di de nîşandan. Wêranî û kambaxiya li ser wan herêman de tên, di koçberiyê û valabûna gundan weke tablûyek xemangirtî zelal dike.

Nakokiyên dewleta Tirk bi estixbarat û Medyayên xwe, di nava civaka kurd de diçîne,û bi derûniya wî di lehîze, di veqetandin û ji hevketina gundiyan de, tê pêkanîn, bi hemî awayan paşverûtiyê di parêze. Mixabin bi encamên zordestî û hêrîşên leşkerî û cengên xweser yên dewleta Tirk li dij kurdan, bi hezaran gund ji xwedanên xwe vala bûne. Di vê roman ê de weke nimûne, rewşa hemî herêmên kurdistana bakûr tîne ber çavên xwendevanan.

Em bi hîvî ne ev roman bi be hêz û derî ji berên berhevtir û nûtir re, hêja Yehya Silo

## Pirtûkên nû çapkirî




## Xelat



# Zilxana Keça Nemrûd

## Xelek (3)

Dr.Yekta Uzunoglu



Talîkê em gihiştin bajarê pêxemberan. Ewilî me darên zeytûnan, hinar û fistiqan dîtin, me dît ku çiyayên berz wekî nîv-heyvekî bajêr pêçaye. Me zû bi zû dixwest em gola mişt masî bibînin. Lê wext pirr dereng bû, divû em zû biçûma mala merivên dayika xwe ku ew me wekî zarokên xwe yên helal ji dil û can pêşwazî kirin.

Her tiştên malên xwe didan ber me. Heyrî mabûn ku beriya wê dema ku ew hêvî dikirin em gihiştibûn wê derê. Hîna tam haziriya xwe nekiribûn. Lowma jî di bin şermeke bêhempa de lêborîna xwe dixwestin. Dewekî bi pelên gulan xemilandî û nanên dayika Sarê bi hingiv û qeymaxê bû anîn ji me re. Heya wê demê min nanekî mîna ya Dayikê Sarê nexwaribûn.

Mezinên me tevahiya şevê qala Adem û Hewa, Nûh, Îbrahim û Nemrûdê xerab kirin, wek ku wê rojê jiyabin û hîna jî di wan rojan de bin bi xeml û xemilandî vegotin. Tenê di vegotinên wan de Nemrûd xerab bû, hemû kesên ji bilî wî kesên esilzade bûn, mişt hezkirin, birehm û nûr bûn, hemû kesên pîroz bûn. Ji nişka ve tirsek ket dilê min ku Nemrûdê ewçend xerab hîna jî dibe ku dijî û li bajêr e.

Sibeha wê şevê, me çîroka navê diya xwe pirsî, ji ber ku ev rêwîtîya mişt serpêhatî tev ji bo hînbûna mahneya navê wê bû. Wekî her caran bi hezkirin û rehm serê me peland, diyar kir ku ew ê îro dawî li meraqa me bîne, ew ê cihê ku navê wê kiriye navekî nemir şanî me bide.

Destê sibehê zû, em bi merivên xwe yên mêvanperwer re ber bi çiyayê ve hilkişiyan. Em zarok bûn, riya rêwitiya me bo me pir tîk û zehmet dihat, her carê me ji mezinên xwe doza bêhnberdanê dikir. Berê em bigihijin lûtkeya çiyê, di bêhnvedanan de xatiya me tim ava cemidî û şekir didan me.

Di lûtkeya çiyê de, em li ser xalîçeya ku xatiya min ji malê anî bû rûniştin. Beriya ku dayika min dest bi çîroka navê xwe ya ku di oxira wê de me ewqas rê û erdnîgariyên biyan da bû ber xwe û bêsebr li bendê bûn, bike, bi destê xwe cihekî (wêneya li jêr) rê me kir. Cihê wê şanî me kir, doleke fireh, bê ser û binî bû, dema mirov lê dinêriya bêhna mirov lê vedibû.

Diya min diyar kir ku ew der ew bihûşte ku Xwedê piştî xuliqandina Âdem, ew şandiye wir û ji bo Âdem



xemgîn û bi tenê nemîne jî Hewa xuliqandiye.

Pirsa Nuh kir ji me re bê di bîra me de ye an na. Me ji nişka ve got "tê bîra me". Wî ew Geştî ava kiriye, ji bo ku heywanan ji tofanê biparêze jî gişan xistiye hundirê wê. Diya min pirsî bê em dikarin Geştiyê bibînin an xeyal bikin. Nuh baweriya xwe bi Xwedê anî bû, her tiştê jê hatibû xwestin bi cî anîbû, lewma jî Ew bes ne Nuh, hemû heywan û nebatan xelas kiribû.

Yezdan (Xaliq) ji bo ku Âdem ji sermayê û ji xerabiyan xwe biparêze postek dabûyê. Dûre Nuh bûbû miratgirê wî postî Yezdan dayî. Nemrûd neviyê herî mezin yê Nuh bû. Nemrûd posta ku Âdem li xwe dikir wergirtibû, bi vê yekê re xwe xistibû bin parastinê; pê re jî xwe qurre kiribû dev ji evdbûna Xwedê berdabû. Navê xwe dabû du çiyayê. Yek jê gelek dûr bû. Nêzî bajarê Semsûrê bû. Li ser hespê mirov karibû di heftakî de biçe. Ê din li kêleka gola Wanê bû. Li ser hespê mirov karibû di 3-5 hefteyan de biçe, di nav rêzeçiyayan de bû.

Çiyayê ewil ji bo zivistanê bû. Yê dûyemîn, li kêleka gola Wanê jî ji bo havînê bû, ew der di germahiya havînê de hênik bû. Di palekî bilind ya Nemrûdê de goleke volqanîk hebû, ava wê kûr û germ bû, zivistanê jî cemed nedigirt. Dermana her derdê ji wê ava mezin û germ peyda dibû, ji bo hemû xweşînan şîfa bû.

Nemrûd, bi ser de, di navîna çolan de, bi navê Babîl bajarekî dabû avakirin, têrê nekiriye, Birca Babîlê ava kiriye ku serê wê digihije erşê. Ew bi wê bilindbûna bircê re dixwest xwe bigihe asta Xwedê. Axir şeytên ketibû xwîna wî, Nemrûd ji xwe re Xwedayên biçûk çêdikirin. Şeytên ji Nemrûd re qala xewna xwe dike şevekê, dibêje "ew ê sala bê zarokek li Rihayê çêbe, ew ê mezin bibe û ew ê te bikuje". Dotira rojê, Nemrûd ferman dide parêzvanên xwe ku ew sal hemû zarokên nûçêbûyî bikujin.

Komkujiya zarokan dest pê kir. Lê belê jina efserê wî Ahad, Nuna jî biheml bû. Ji ber ku nedizanin bê zarok keç e an law e, hemlbûna wê eşkere nekirin.

Rojekê ji rojan, dê û bavê pitikê, ji ber êş û azara xwe nikarin debar bikin, qe nebe dixwazin hestiyên pitika nikarin debar bikin, qe nebe dixwazin hestiyên pitika xwe bibînin diçin şikeftê. Dema dibînin ku zarokê wan bi kêf û coşî bi heywanan re dilîze, şaş dibin. Li gor wan qey yek ji wan Xwedayan ew xwedî kiriye, lê belê biqasî dayika mirovekî xezalan ew xwedî kiriye.

Bi demê re, dema êdî fermana Nemrûd hat jibîrkirin, wan ew ji şikeftê anîn, navê Îbrahîm lê kirin. Dema zarok mezin bû, bû zilamekî xurt û wêrek pê ve, bavê wî û Nemrûd jî tê de li hember pûtperestan, ket şerê şikestina îkon û kevirên perestî. Yekem car wî diyar kir ku Nemrûd li hember Xwedayê Tek xaînî kiriye.

Nemrûd pir bi hêrs bû, Îbrahîm avêt zindanê. Qîza Nemrûd Zilxan, hevala herî nêz ya Îbrahîm bû, wek xwişk û bira bûn. Bes Zilxan bawerî pê anî ku Xweda yek e. Dema seh kir ku bavê wê Îbrahîm avêtiye zindanê, çû ber bavê xwe, çok danî ji bo wî, daxwaz û lava jê kir ku, bes ji bo xatirê wê Îbrahîm efû bike. Lê belê Nemrûdê xedar xwe di asta Xwedayan de didît. Îbrahîm bemeda û bi ser de qîza xwe jî li aliyên din ê Rihayê, di quntara çiyayê de, li qesra havînê xist bin çavan.

Zilxan, di nav êş û keseran de her roj diçû ser zinarên di bexçeya qesrê de, bi elem digiriya, ditirisiya ku Îbrahîm bê kuştin. Ewqas digiriya, hêsirên çavê bûn kanî herikîn, ew kaniya herikî jî ji çiyayan hat xwarê, li jêr bû gol.

Li derdora wê kûlîklk vedan, gûl û hinar, hejîr, zerdalî û xox mişt bûn, wê derdorê xemilandin. Hemû xenîmetên Xwedê li wir şîn bûn. Ew der bûbû wek bihûşta di kitêbê de. Xwedê hemû bereketa xwe li gola ji hêsirên Zilxanê çandibû.

Nemrûd, ferman da ji bo mencenîq li ser çiyayaê Rihayê bê ava kirin, dû stûnên dirêj bêne çêkirin. Îbrahîm dê bixistina nava wan her du stûnan, bavêtana nava êgir. Nemrûd li malan jî şewitandina êzingan qedexe kir, ferman da ku hemû êzingên welatê....

Li quntara wî çiyê bi cî bikin ku agirê wê eynî wek agirê cahnimê bû.

Tevahiya dolê bi êzingan tije bû, qama êzingan gihiştibû lûtkeya çiyê.

Di quntara çiyê de, agirekî wiha pêxistin ku digihişt ewran. Îbrahîm dê bavêtana wî agirî. Li gor riwayetê, herî zêde qantir êzing biribûn wî agirî, Xwedê qantiran naletî kir. (Dûmahî di R. 10)

# Bikarînana Tîpên Yewnanî di Zanînan de

Um□rê Naskûrê



## Yekem: Tîpên yewnanî û awayê bilêvkirina wan

| tîpên girdik | tîpên hûrdik | Bilêv kirin |
|---|---|---|
| Α | α | elfa |
| Β | β | bêta |
| Γ | γ | gama |
| Δ | δ | dêlta |
| Ε | ε | êpsîlon |
| Ζ | ζ | zêta |
| Η | η | êta |
| Θ | θ | têta |
| Ι | ι | eyota |
| Κ | κ | kapa |
| Λ | λ | lemda |
| Μ | μ | miyiw |
| Ν | ν | niyiw |
| Ξ | ξ | kî |
| Ο | ο | omîkron |
| Π | π | pay |
| Ρ | ρ | ro |
| Σ | σ | sîgma |
| Τ | τ | taw |
| Υ | υ | yup |
| Φ | φ | fay |
| Χ | χ | kay |
| Ψ | ψ | ipsay |
| Ω | ω | omêga |

Tîbenî: tîpên giring yên tên bikarînan, ew hişîn in.

Duwem: Bikarînana tîpên yewnanî di zanînan de (Fîzya, Kîmya, Bîrkarî û Endazyarî):

α: Hêmaya:

- Tîşkên elfa.

- Goşeyê ne girêdayî bi dem ra.

- Tawdana goşeyî.

- Karkira kişana dirêjiyî ya madê.

β: Hêmaya:

- Tîşkên Bêta.

- Karkira kişana riweyî ya madê.

Γ: Hêmaya Zebira hêzê.

γ: Hêmaya:

- Tîşkên Gama /Tîşkên karûkankêşî/.

- Karkira kişana qebareyî ya madê.

- Karkira girjê riweyî yê şiliyê.

- Rêjeyê baristeyê di mîkanîka rêjeyî de li ser baristeyê di mîkanîka westanê de.

Δ: Hêmaya:

- Tewera Geranê di livandina zivrok de.

- Gihorîna rût ya çendiyê,wek nimûne: gihorîna rût ya peliya germê.

- Cîwaziya hêldarê yê xalikê ji du jêderên lerzok, çaxê têkevtina pelanê.

**δ:** Hêmaya:

- Gihorîna piçûk ya çendiyê, wek nimûne: gihorîna piçûk ya nediyar x: **δx**.

- Bargeya piçûk di Kîmya de, wek nimûne: **⁺δ, ⁻δ** .

**ε:** Hêmaya:

- Negihora negiyandinê karebiyî ya negiyander.

- **$\varepsilon_0$** Negihora negiyandinê karebiyî ya negiyander di boşayê de, **$\varepsilon_0$** = $8.854\times 10^{-12}$ Farad/mitr.

- Rêdana karebiyê ya Boşayê.

- Hêza livîner haydayî karebiyî li peyî demê.

- Wizeya bizwînê kişandanî navîn ya gerdê gazê.

**η:** Hêmaya:

- Radeya amêrê yan amrazê.

– Karkira linciyê ya şiliyê

**θ:** Hêmaya:

- Goşe.

- Bara bizwînê hevgur (ya bi demê ra girêdayî ye).

**Λ:** Hêmaya lêdana tîşkî ya du yan çend tîşkan.

λ: Hêmaya dirêjiya pêlê di bizwînên lerzik de.

μ: Hêmaya:
- Wek kurteyek ji nerxê 10-6 tê bikarînan.
- Karkira pêdaçûna kankêşî ya madê.
- μο Rêdana kankêşî ya boşayê, ew: 4.π.10-7 têsla.mitr/empêr e.
- Paresteya hêlî ya dezîkî yan jêyikî.
- Hawhêzê avî ya germapêw.

ν: Hêmaya leza hêlî ya bizwînerikî (laşikî yan nîşanikî).

Π: Hêmaya lêdana komê hejmaran di Bîrkarî de.

π: Hêmaya tîna negihor e, ew 3.14159 radyan e, rrêjeya çêweya bazin li ser tîrê.

ρ: Hêmaya:
- Paresteya Gebarî ya madê.
- Çiriya madê.
- Bergira curî ya madê.

Σ: Hêmaya:
- Komkirina komê hejmaran di Bîrkarî de.
- Jêgîra Poltizman - Stîvan 5,67.10-6 wat/m2. kilvên4.

σ: Hêmaya:
- Çiriya bargeyê karebî.

τ: Hêmaya Zebirê ye.

Φ: Hêmaya:
- Hellqullîna biwarê kankêşî.
- Tunebûna çareserkirinê di bîrkarî de.

φ: Hêmaya:
- Bara seretayî ya bizwînê hevgur (ya bi demê ra negirêdayî ye).
- Cîwaziya barê tezû ji erkê.
- Goşeya karkira tewanê.
- cos φ: karkira tewanê.

Ω: Hêmaya Yekîna bergirê, bilêvdibê ''om''.

ω: Hêmaya:
- Lezeya goşeyî.
- Velêdana bizwînê di bizwînê hevgur (lerînê) de.

Tîbenî:

∞: Hêmaya bêdiwayî ye, bilêvdibê '' înfînîtî''.

Siyem: Zaravayên Gotarê:

| Kurdî | Erebî | Kurdî | Erebî |
|---|---|---|---|
| Tîşk | شعاع | Negiyandin | العزل |
| Goşe | زاوية | Negiyander | العازل |
| Tawdan | تسارع | Rêdana karebiyê | سماحية كهربائية |
| Karkira Kişan | عامل التمدّد | Boşa | الفراغ |
| Riwe | سطح | Wizeya bizwînê kişandanî navîn | طاقة حركية انسحابية وسطى |
| Zebir | عزم | Gerdê gazê | جزيء الغاز |
| Hêz | قوة | Rade | مردود |
| Laşe | جسم | Karûkankêşî | كهرطيسي |
| Nîşan | إشارة | Qebare | حجم |
| Lêdana hejmaran | جداء الأعداد | Girjê riweyî | توتر سطحي |
| Bîrkarî | رياضيات | Amêr | آلة |
| Tîna negihor | قيمة ثابتة | Amraz | أداة |
| Paresteya Gebarî | كتلة حجمية | Lince | لزوجة |
| Çiriya madê | كثافة المادة | Bergira curî | مقاومة نوعية |
| Komkirina hejmaran | جمع للأعداد | şile | سائل |
| Jêgîra Poltizman - Stîvan | ثابت بولتزمان – ستيفان | Rêje | نسبة |
| Bar | طور/زاوية/ | Kilvên | كلفن |
| Bizwînê hevgur | حركة توافقية | Barge | شحنة |

## Jêd□ran:

1- کەماڵنامە فەرهەنگی زانستی: عەرەبی- ئینگلیزی- کوردی، کەمال جەلال گەریب، سلێمانی-2003م

2- فەرهەنگی زاراوە / عەرەبي و کوردی /: بەدران ئەحمەد حەبیب، هولێر، 2002م.

3- حکوومەتی هەرێمی کوردستان-وەزارەتی پەروەردە- مادێن (زانستێن پیشەسازی ئەلکترۆن- وێنەیێ پیشەسازی کارەبا- زانستێن پیشەسازی کارەبا- فیزیا ) .

4- Ferhenga Zaravên Teknîkî : Kurdî-Türkçe-English, Amed, Çapa yekemîn, 2014.

5- كلمات مختارة BÊJENE VEBJARTÎ *عربي – كردي* (1): د .محمد عبدو

Pirtûka: Selah Mihemed

# Ferhenga Ziman



## Erebî - Kurdî

(xelek 20)

| | |
|---|---|
| Xêzek | إشارة ( ـــ ) |
| Xêzok | إشارة ( - ) خط صغير |
| Nîşan bi | اشارة الى |
| Nîşandeka hêdanê | اشارة التعجب |
| Farş kirin | اشاعة |
| Reş û beş | اشباح |
| Têr kirin - têr bûn | اشباع |
| pevketin-li hev xistin- tê alîn | اشتباك |
| Goman kirin-goman | اشتباه |
| Gîtî | اشتداد البرد |
| Germixî | اشتد الرياح |
| şert û bend kirin | اشتراط وتقيد |
| hev parî-hev beşî | اشتراكية |
| kirî | اشترى |
| seryek kirî | اشترى بالجملة |
| Dest çep – desçap | اشتر |
| Abone | اشتراك – مساهمة |
| ageh kirin | اشعار |
| Agir birin-vêketin-vê xistin | اشتعال |
| vêket | اشتعل |
| Jêder kirin-jê derxistin | اشتقاق |
| Gilî kirin | اشتكاء |
| Bihn kirin | اشتمام – الشم |
| Bînkirin – bihn kirin | اشتمام |
| Bêz – bêjyo | اشتهاء |
| kewij-kerbandin | اشتهاء الحامل من النساء |
| Bijayê | اشتهى |
| kulibî | اشتهى الطعام |
| Bijîn-dilçûn-gevil | اشتهاء |
| bêrî kirin | اشتياق |
| nehwirandî | اشجاء |
| Dev lixab – arçêm – arçêmk | اشداق |
| Zexmtir | اشدّ |
| no tir | اشد ضراوة |
| Çavnêr-çav kirin-ser periştî-ve diyar kirin-vedîtin | اشراف |
| qamihandin-qamandin | اشراف الثوب على الاحتراق |
| rivîn-rivên-rondarî-rû-rû geşî-tavdan- tezahî-xweş rûyî-vedîtin | اشراق |
| paydar kirin | اشراك |
| kincik | اشرطة من الاقمشة |
| vedît | اشرف |
| Hilat-hilhat | اشرق |
| Rewiqî | اشع |
| Pelikandin | اشعار |
| rewiqandin-rewiqîn | اشعاع |
| vêxistin-pêxistin | اشعل |
| rejîn-tîrêj-tîrêjtav | اشعة الشمس |
| Gij-sîs | اشعث |

| | |
|---|---|
| Por gij-pov icol-pov hicol | اشعث الشعر |
| Vêxist | اشعل |
| cî girtin | إشغال |
| mendehoş kirn | اشغال البال |
| sax kirin | اشفاء |
| şqênandin | اشقاء |
| sorî kej-kej-sîs | اشقر |
| şê | اشقر للحيوانات عموما |
| şêtarî | اشقر غامق |
| şêzelal-şêvekirî | اشقر فاتح |
| dilê min şehitî | اشك في ذلك |
| şel-pûç-şext û şel | اشل |
| Bihvil bilind | اَشَمّ |
| xelya | اشمأز |
| Bêzarî-los-mone | اشمئزاز |
| reşik | اشمط |
| kevz | اشنة |
| reşboz-sipî pat | اشهب |
| Çav kal | اشهل |
| mexîn | اشوري |
| qic | اشوص |
| Çepre | اشياء مستهلكة |
| bê hev | اشياء متعارضة مثل الماء والملح |
| pêrevi-pêrewi | اشياع |
| mû sipî-por sipî-mûsipî | اشيب |
| pirtîng | اشياء |
| lêket | اصاب |
| Hîncan-sincan | اص |
| Hêpbeta ez girtim-mam hêbet mayî | اصابني الذهول |
| Hingift-lêqewimîn-derb | اصابة |
| Armanc xistin | اصابة الهدف |
| Beyîkê dayê de | اصابة الدود كالجبن ويشبه المش في مصر |
| kurm lêketin | اصابة الزرع بالدودة |
| tamîmsk daye der | إصابة الانسان بالحمّى |
| pêketin | اصابة الهدف |
| Bizûzik lêdan | اصابته العثة |
| tilî-pêçî-enguşt-tileh | اصابع |
| nejadî | اصالة جنسية |
| torîn-tprinî-torinîtî-xanedanî | اصالة |
| nejad-regez-rih-reh | اصل |
| bûn | اصبح |
| qerimî-bû kurk | أصبحت قرقة |
| peritandî | اصبح حنيفة |
| Bû | اصبح – صار – تأتي قبل الاسم |
| rehakirin | اصبح حراً |
| rewitîn | اصبح مضحوضاً |
| rebesîn | اصبح المكان مهجورا |
| bû xirê | اصبح مهزلة |

....Dûmahî heye ....

Pirtûka: Beyar Robarî

# Seyên zimanê kurdî

(Xelek 34)

Xwendevanên hêja; Hûnê di vê xelekê de heft beşan bixwînin, ku ew jî evin;

1. Elfbeya kurdî
2. Tîp
3. cûreyên tîpan
4. Tîpa dubare
5. Taybetmendiya tîpa (U).
6. Taybetmendiya tîpên (E û Î)
7. Xîmên zimanê kurdî.




## Elfbeya kurdî: Kurdish alphabet.

131

b. Lêkera afirandî: create vebs.

Kenîn- Koka dema niha (ken) e. root present tense.

| | | | |
|---|---|---|---|
| Ez | dikenim | Em | dikenin |
| Tu | dikenî | Hûn | dikenin |
| Ew | dikene | Ew | dikenin |

Dizîn- Koka dema niha (diz) e.

| | | | |
|---|---|---|---|
| Ez | didizim | Em | didizin |
| Tu | didizî | Hûn | didizin |
| Ew | didize | Ew | didizin |

Revîn- koka dema niha (rev) e. root present tense.

| | | | |
|---|---|---|---|
| Ez | direvim | Em | direvin |
| Tu | direvî | Hûn | direvin |
| Ew | direve | Ew | direvin |

Numîne: example.

Ez bi qeşmer dikenim. Em bi qeşmer dikenin.
Tu bi qeşmer dikenî. Hûn bi qeşmer dikenin.
Ew bi qeşmer dikene. Ew bi qeşmer dikenin.

c. Lêkera lêkdirev: compound verb.

Xebatkirin- *Koka dema niha: (xeba .. k.) ye.*

| | | | |
|---|---|---|---|
| Ez | xebat dikim | Em | xebat dikin |
| Tu | xebat dikî | Hûn | xebat dikin |
| Ew | xebat dike | Ew | xebat dikin |

Hezkirin- *Koka dema niha: (hez .. k.) ye.*

| | | | |
|---|---|---|---|
| Ez | hez dikim | Em | hez dikin |
| Tu | hez dikî | Hûn | hez dikin |
| Ew | hez dike | Ew | hez dikin |

132

Numîne: example.

Ez ji Rewşenê hezdikim. Ez heroj xebadikim.
Tu ji Rewşenê hezdikî. Tu heroj xebatdikî.
Ew ji Rewşenê hezdike. Ew heroj xebat dike.

Em ji Rewşenê hezdikin. Em heroj xebatdikin.
Hûn ji Rewşenê hezdikin. Hûn heroj xebatdikin.
Ew ji Rewşenê hezdikin. Ew heroj xebatdikin.

**Hîndarî -56 (practice)**

Lêkerên hîmî jêrîn, li gor nihokê tev cînavên kesanî radar bitewîne.

Dan- *Koka dema niha (d) ye.* root present tense.

| | | | |
|---|---|---|---|
| ez | ………………. | em | …………………. |
| tu | ………………. | hun | …………………. |
| ew | ………………. | ew | …………………. |

Çûn- *Koka dema niha (ç) ye.* root present tense.

| | | | |
|---|---|---|---|
| ez | ………………. | em | …………………. |
| tu | ………………. | hûn | …………………. |
| ew | ………………. | ew | …………………. |

**Hîndarî -57**

Lêkerên afirandî jêrîn, li gor nihokê tev cînavên kesanî radar bitewîne.

| kirîn- | Koka dema niha (kir) e. | çêrîn- | Koka dema niha (çêr)e. |
|---|---|---|---|
| ez | ……………………. | ez | ……………………. |
| tu | ……………………. | tu | ……………………. |
| ew | ……………………. | ew | ……………………. |
| em | ……………………. | em | ……………………. |
| hûn | ……………………. | hûn | ……………………. |
| ew | ……………………. | ew | ……………………. |

....Dûmahî heye



# Gotinên Pêşiyan

Ebdulbaqî Huseynî

## Çend gotinên pêşiyan..

1. Ê bi male, bi xaltîk û xale!
2. Ê ku ji beroşa xwe têrnexwe, ji ya xerîba jî têrnaxwe!
3. Şam şekire, welat jê şêrîntire!
4. Bi pirsê mirov diçe Xursê!
5. Aş digere bi avê, law dike karê bavê!
6. Mêvanê yekî, mêvanê gundekî!
7. Li ku mefaye, li wir bav û biraye!
8. Kevir girane, di cihê xwe de!
9. Hemû mêr, nabin şêr!.
10. Her giya li ser xaka xwe şîn tê.
11. Her kes qazî ye, bi xwe razîye.
12. Heya dewê xelkê hat, nan qediya.
13. Heya gotin gur û rovî, îşê xwe birin nîvî.
14. Hezar sal li dinê bî, tu her dîsa mêvanê qebrê bî.
15. Hem ji kerê bû, hem ji Perê bû.
16. Hindik rindik.
17. Hinek malan ava dikin, hinek jî xerab dikin.
18. Karê îro nespêre sibehê.
19. Îşê demekî, qismeta salekî.
20. Ji din baranê reviya, çû ber zîpikan.
21. Ji tifikê here pifikê.
22. Ji xelqê re masî, ji xwe re kosî.
23. Jinên xwîn şîrîn û jinên bedew herdû felaketin.
24. Kalo nemre bihar tê, pîrê nemre pincar tê.
25. Keça mêran bixwazin, keça jinan nexwazin.
26. Keçên jinbiyan nexwazin, keçên mêran bixwazin.
27. Ker û kurî li hev zûrî.
28. Kerê xurt, ço bi xwe nake.
29. Li ku êvare, ew jê re ware.
30. Li mala bavê nexş û tevnan çê dike, li mala mêr tevan ji bîr dike.
31. Mal tê, can nayê.
32. Mala pîrê stara pîrê.
33. Malê helal bi nîmete.
34. Bi pirsê mirov dighê Xwirsê.
35.Mirovê ku bi nîşan dibe, êleka xwe darda dike.
36. Mirovê xerîb kore.
37. Ne deyndar be, ne maldar be.
38. Ne dîn e, dînan baqil dike.
39. Ne ji mirovê xerab be, gur û mih bi hev re diçêre.
40. Niha ji xeswê re dibêjin: “Bûk çawa ye?” Berê jî ji bûkan re digotin: “Xesû çawa ye?”.
41. Nimêja wext, padîşahê li ser text.
42. Nîsan e, çilka baranê bi kêsane.
43. Pêlên mêran weka behre.
44. Pênc deqe sebir bike pênc sala bijî.
45. Piranî, mêranî betal dike.
46. Qerto zozan e, kesek pê nizane.
47. Dîwar bi guhin.
48. Qise tê ser qisê.
49. Qiz radibe, teşiya dê digre.

Law radibe misasê bavê digre.

50. Reş e, bi xwediya xweş e.
51. Rêviyê geriyayî, ji şêrê veketî çêtir e.
52. Serê ku na êşe, ne hewceyî desmalê ye.
53. Serê salê binê salê, Xwedê kurikê bide kevaniya malê.
54. Şîva gerokan tune.
55. Teyr ji refê xwe naqete.
56. Tirî li tirî yê reş mêze dike, reş dibe.
57. Tu ji ku yî, ez hîna ne zewijî me.
58. Ji kerê ketiyê, hop hop jê tê.

## Dûmahiya:

# Zilxana Keça Nemrûd

Ji wê demê ye qantir ji qantir..... êzing biribûn wî agirî, Xwedê qantiran naletî kir. Ji wê demê ye qantir ji qantirê nazê. Pey re Nemrûd ferman da ku menceniq bê dagirtin û Îbrahîm bavêjine agirê gur.



Xwedê agir veguherand avê, êzingan veguherand masîyê. Xwedê ji dêvla ku Îbrahîm bavêje nava wê avê veguhrandî, ew bi nazikî danî çîmenên bexçeya bihûştê ku bi hêsirên Zilxanê hatibû avdan. Gola ji hêsirên Zilxanê û gola ji êgir veguherandî gihiştin hev du.

Axirê bi vê çîrokê me sêhr û efsûna navê dayika xwe ya kêm peyde dibû hîn bûn.

Di bin stûnên menceniqan de em ji çîrok, efsane û hikayetên dayika xwe yên berê bêhtir têsîr girtibûn, Di bin stûnên menceniqan de em ji çîrok, efsane û hikayetên dayika xwe yên berê bêhtir têsîr girtibûn, kelecana me hîn bêtir zêde bibû.

Ew gol ji wê demê ve hene, kes dest nade wan masiyan. Di nav van golê ji hêsirên Zilxanê û ji êgir pêkhatî, ji avê bêtir masî hene û ev masî jî jiyana xwe di bihûşta ku Xwedê bexşandiye wan didomînin.

Di vî emrê xwe de min fahm kir, ji vê rûzemîna ku bi milyaran mirov li ser in, ji rojên ku miş bi keser û keder in, heta ku dem bi dem ji xeleka xwe ya hestiyariyê jî direvim, li aramiyê digerim, bi tenê zaroktiya min, bîranînên zaroktiya min hene. Li hemberî her tiştî bi awakî jêneger bêriya wan dikim. Serê pêşî jî bi nazik û kûbariya xwe ya bêhampa dayika li ser texta wê demê û hemû deman rûniştiye, bêriya dayika xwe dikim. Kilamên ku wê tim digotin her di guhê min de ne, ez bi dengê yê di guhê min de maye debar dikim, xwe sax dikim.

"Xezal Xezal oy hayê hayê…

Şewtê kulê dilêm pir bûn Xezalê… hayê…"



# Siyabend û Xecê

## (Xeleka 5)

Luqman Silêman





Li gor gotina Gurî ev cara pêşiya ku ew serê xwe datîne, da ku razê û zikê wî ne valeye...! Gurî vê gavê bi xew ve çû, têr xwariye.

Roja dî beriya elindê Gurî ji xew rabû xwe vekişand bû qirçe qirça movikê pişta wî, destên xwe hinkî birin û anîn, wek yekî ku di nav pirtikên Nihaman de raza bê, Gurî zimanê xwe li herdû teliyê xwe da bi çavên xwe ve bir û anîn, ew jî ji dêvla çav şiştina wibû..?

Gurî berê xwe da dora gund, carek du car li dora gund çû û hat, hîn kes ji xew ranebûye.. Gurî xwe da serê mitikekî li pêşberî gund çavê wî ma li gund ka wê kengî ji xew rabin û sewalên xwe ji mal berdin, da ku hinerê xwe şanî wan bikê.. Hema diniya zelal bû, zelal ne bû, kit û mitên sewalê gundiya xwiya kirin. Guriyê me xwe ji ser mitik berda nihişt tiştek ji gund derkevê, sewala girt guhanê hina jêkir, dûvê hina jêkir, guhê hina jêkir, lingê hina şikand, sewalê dî vegerand bi ser çavên gundiya de?

Gurî wek gurekî dev bi xwîn lê hat û kete dora gund rihê wan kire qêlik de, gundî diçinê, ew xwe didê serê zinarekî ber singa xwe tijî kevir dikê û gundiya didê ber keviran, kes newêrê xwe nêzîkî wî bikê? Gurî wek şêrekî birîndar lêhat û kete dora gund nema kes dikarê ne ji gund derkevê û ne here gund, ne rojek, ne di roj, ne sê roj, ev bû karê wî.. Gurî gund li gundiya kire zindanek bê derî, ne şeva wan şeve ne roja wan roje...?

Gurî bi bang dana tîtîre ji xew radibê û dikeve dora gund dar vanî, karwanî, cotarî, yê şivan, yê gavan, na hêlê kes ji gund derkevê, û li dora gund re weka hespê ji ser tewlê vebê, dizîvire û didê ber qîra tirsê dikê dilê gundiyan..

Tu mefera gundiya ji ber Gurî nema, tiştê mayî di destê wan de berê xwe didin mala apê wî gazindê xwe jêdikin.. Jixwe jinek gavên heye, her êvar dema ku jinik diçê nanê gavantiya xwe ji nava gund didê hev, Gurî dikevê pêşiya wê nanê wê pêre pardikê. Jinek newêre deyîn jî bike, tiştê jêtê berê xwe didê mala apê wî gazindê xwe ji wî dikê lê jinik jî dizanê ku apê wî nikarê tiştekî bikê..?

Heroj gundî li ser serê apê wî ne jêre dibêjinê divê ti çarekî ji biraziyê xwe bike, em qelandin heyat ji mere nema, qîma me nema tê..?

Apê wî ji gundiyan re dibêjê ezjî weka we, ka werin em ê wî bi kujin, ma ka çi bi destê min tê û min ne kiriye, va hûn bi çavên xwe dibînin, ka wî ji min re bigrin, ez ê wî li pêş çavên we serjêkim..? yabo bi soza Xwedê, kî ji we Gurî ji min re bigrê ez ê wî li pêş çavên we bi kujim, birazîke ji min re navê.

Gundî hemû xwe têxin yek bi şev di çinê, dixwazin wî di xew de bigrin, lê di bînin va ew şiyare û li pêşiya waye, wa didê ber kevira, bi roj di çinê cardî nikarin Gurî. Gurî ya nemayî anî serê gundiya..? Gurî wek pilingekî lê hatiye di wan geliyan de hingî baz didê, xwe ji ser zinarekî tavêje ser zinara dî mirov wî nabînê çawe çû û kengî çû, kes nizanê, mirov hew dibînê, va li ser zinara diye û ew çîpilaqê devê di destê wîde ye, li ezmana di hejîne wek ku şer dikê.

Gurî xwe di wan gelî û zinar û newalan de fêrî şerê Şûra kir, dikarê li pêşiya alayîk leşker bi sekinê û ne xema wiye, weka yekê ku jiyana xwe di şerê Şûran de qedandibê, wisa Gurî çeleng bûye..

Gurî hingî goştê biraştî, yê sewalê gundiya dixwê li wan çiya wek kudekî lê hatiye, yekê reşikê kinikê gorove re, di mûyê melkemot di nav çavên wî dene, çavên wî ji mirinê naşikê dera ku ew bi şev diçiyê xelk ne wêrin bi roj herNê. Gundê Silîva karê wan nema ji Gurî pêve, şev û roj axaftinê wan li ser Gurî û karê Gurî û wê çawe jê xelasbin nizanin...? bû belak kete nav piyê wan de civetê wa li nava gund li oda axê li malê wan tev bûye çîroka Gurî û ka wê çawe wî bigrin, yan ka wê çawe ji dora gund berdinê, bûye kulek û ketiye ser dilê her mirovekî gundî, ji piçûkan ta bi mezina, êşeke û bi ser gundê Silîva de hatiye, belake û Xwedê ji wan re şandiye.

Rojekê Gurî li binê darekî li ser devê rê rûniştiye guhdariya gund dike û dibere kenikê serê xwe jî dixwerêne, hewdî xortek jê bûrî kete nava gund.. Gurî serê xwe bilind kir lê nêrî ji xwe re got: lawo wele ti ji min bûrî qey diya te nanek daye feqîrekî, min ti nedîtî? Cardî li kenikê serê xwe mijûl bû, di bêjin dema ku serê sibê rojê nû dihilat û dida serê wî bi herdû destan Gurî bi serê xwe diket, wek yekî ser xweş . diwan kêliyan de ku diniya jî bi ser wîde xirabû ba hayê wî ji tiştekî nema, hingî serê wî di xwera. Serê wî dixwera wek av zêlekê lê dihat..

piçe piç bi serê Gurî dikevê halê wî namîne, carna ku lê gerim dibû Gurî xwe li dîwaran dixst, wek tu piyanek rûnê gerim valekê ser serê wî.. keçeliya wî bi ser çavê wî de di herikî, ji lewma dema ku Gurî serê xwe di xwerîne haj tiştekî namîne, bi herdû desn serê xwe dixwerîne û xwerha serê wî naşkê..?

Ew xortê ku derbasî nava gund bûyî, keçikek ji gundê Silîva ji xwe re xwestibû ew wê rojê hatibû mala xezûrê xwe êvarî piştî ku şîva xwe xwarin, ew jî bixezûrê xwe re çû oda axê rûniştin, ev jî adet bû, divabû zilamê gund tev mêvanê xwe êvara herin oda axê.

Zavê gund ew jî ji xwe re guhdariya zilaman dike, dî çi zilamê gundiyê tê li odê dirûne, û berê xwe didê zilamekî navser ku li qurcika odê rûniştiye berê xwe didin wî zalmî û gazinda jêdikin.

Ew xort îî ji xwe re li wan di meyzînê, ew mêvane û xezûrê wîjî rûniştiye, ji lewma ew hinekî şerimdikê, xwe bavêjê nav axavtinê lê dêna xwe dayê.

çi zilamê ku tê oda axê berê xwe didê yê gundî û gazinda jêdikin...

Ew dibêje îro Gurî dûvê çêleka min jêkiriye, yê dî dibêje guhanê miha min jêkiriye, yek dî dibêje lingê bizina min şikandiye, her yek doza tiştekî li wî zilamî dikê..? Û zilam maye sekinî destê xwe daniye ber çena xwe li wan di meyzîne, wek yekê ku nizanibê çi bersiva wan bidê..!?

Xort nema xwe girt got: niha hûn ji min re nabêjin ev kiye ji êvara xwedê ve hûn li ser wî daxivin..?

Xezûrê wî gotiyê kurê min ev zilamekî meyî dîne ti wî nas nakê..?

yek dî ji nav zilama got: birazî ez ê ji tere bêjim, wele ne dîne û ne tiştek, çima dîne hal û hewalê me û yekî Gurî evin xwedê rihê me aniye serê bêvila me..?

Xort got: wele îro dema ku ez hatim gund, min dî yekî Gurî li ser devê rê li bin darekî rûniştîbû, hema nebêjin ew e..?

Zilamekî got: weleh ji wî pêve nîne.

Xort got: ev e yê ku hûn ji êvara Xwedê ve li ser daxivin.. Ê herin wî bigrin di diya wîn in, wî bikujin xwe ji xelaskin..? Yek dî got: yabo ma me Kariye û me ne girtiye..?

Xort got: law Xwedê mala we li dozed hezar mîrata bela bikê hey malik li mîratê gerano, ma Gurî melkemote, wê rihê we bistîne, va hûn bi devê xwe dibêjin yekî Guriye? mane Gurî zilameke û hûn sê sed zilam di vî gundî de ne hey mala we li mîratê gerano, hûn bizdihane, de ehda Xwedê li canê min ketibê sibî ez ê herim rişma hespê xwe têxim situyê wî û ji were dest kêşî xwe bikim bînim nava gund, hûn çi jêdikn min ne jêye?

Zilama got: weleh ti wî ji mere bîne mala te û bavê te ava, xezûrê wî got: yabo li ser destên van zilama ti sibî wî ji mere bigre û bînê keça min miftî belaş, bê firingekî li te helal bê..? Xort simbêlê xwe badan, serê wî bû dahol got: ma qey wê roj li min derkevê..?

**(Dumahî heye)**

# Nameyên winda

## (Nama yekemîn)



### Najah Hovek

Xwîşka minî hêja:

Li bîra mine zaroktiya me, dema em bi hev re dileystin, mîna hemî zarokan,

em li bin dara tûyê di civiyan, me mehrikê xwe tanîn, û di bin kulmê axê de diveşartin, û kenê me biser hewşê diket, û hevala me Xelat dihate cem me, bi kirasê wêyî şîn, û digot:

Va ez hatim, min dih meherkê sor hene.

Dem derbas dibû bi lez, û dema em tihin dibûn, me ji ava bîrê divexwar, tê bîra te, aveke hînik bû, piştire, me paçik û darik tanîn, me bûkê paçikî çêdikrin, tê bîra min, carekê, min kirsê diya xwe dirand, kiraskî kevin bû, lê wê tim lixwe dikir, nayê bîra min wê kirasê nû çêdikirin, her çend sala wê kiras û xiftanek didrût, wilo jî ew tim razî bû û şad bû, min kirasê wê kire cilkê bûka xwe, û parçê mayî min dan we, wê rojê min lêdanek xwar, lê wextê min bûka xweyî paçikî xist berê xwe de û ûçikê kirasê diya xwe biser dekir, min lêdan ji bîr kir.

Xwiha min:

Ez diznim go ew roj gelek xweş bûn," li me çûne gilih ", dibû êvar bê ko em xema wext bixwin, û me serê xwe didanî liser balgihê, û di cih de em dirazihan, lê zarokin vê heyamê, rebena, bûne mîna pîra, tiştek ji wê jiyana meyî xweş ne dîtin, leystikê wan bûne lestikê mûbayilê, wextê wan bi zorê derbas dibê, û dema serê xwe liser baligih dideynin, wêneyê kuştin û penaberiyê dibînin, min wê rojê neviyê te dît, mixabin, bi tiştekî razî ne dibû, û dema mûbayil dî , kenî.

Erê xwiha min, heyam hatiye guhertin, û roj bi roj em têde winda dibin, hêvîdarim ko em têde noq nebin..

# Danasîna pirtûkên nû




## Pîroz be Nizar Yûsiv

### Elî Cefer

Hevpşeyê me helbestvanê hest nazik Nizar Yûsiv di van rojên dawî de, berhema xwe ya çaremîn bi nav-nîşana: (Bêdengiya şevê ) derxist.

Ev berhema ji ( 184 ) rûpelan, ku ji ( 60 ) helbestên cur bi cur pêk tê. Ji weşanên dezgeha ( Ser sera ) ye; ewa ku li Berlîn ê paytexta Elmanya rêzdar Dr. Beşar Mistefa bi rêve dibe. Êdî divê rewşenbîr û nivîsevanên me, ji vir û pêde gazinda nekin û nebêjin Yawwwww, me çend destnivîs hene, lê rewşa me ne alîkar e, û ne jî kesî alîkariya me di çapa wan de bike, heye.

Vayê wêjehez û xêrxwazên me çêbûn, û Xwedê wan pir jî bike. Derhênerê pirtûkê jî Idrîs Omer e, û bergê wê ji Mehmûd Ünver e hatiye sazkirin. Lêkolînvanê navdar Heyder Omer jî, xwe daye ber lêvegera wê.

Em rêhevalê xwe Nizar Yûsiv pîroz dikin û jêre dibêjin: Tendirustiya te li cih be, û her û her berhemdar be.

Vreden – Elmanya
27.03. 2019

## Pirtûka Vejîna Kurd: Gulîstan pîr nabin




## Husên Hebeş wiha ser pirtûka xwe li ser Facebookê nivîsandibû

Pirtûka min ya nû di bin navê "Taya Bîhokan" li Berlin ê hate çapkirin.

Spas ji bo Dr. Bashar Moustafa û ji keda wî re.

Wêneyê bergê:

Draie Samar.



# Çîroka Vira

## (Xelek 10 - 11)

Luqman Silêman



## Mayîna Xeleka 10

Zilam got: Min çil tefşo ji xwere jê çêkirin û min da cîranê xwe. Li bayê bezê ez çûm cem cîranê wî min got: kêra min kanî. Zilam got: Raste kêra te li vir bû û min çil neperûşk ji xwere jê çêkrin û min da cîranê xwe. Wele ez çûm cem cîranê wî ka kêra min. zilam got: Min niha da cîranê xwe piştî ku min ji xwere çil şûr jê çêkirin. Xwedê wekalê min û webê mane hûn dizanin serê min werê jêkirin ez gotina neweyî nakim. Yabo bi Xwedê min serê we bi vê kêra rizî êşand lê ma ez çibkim..

Ez bi rêza wa firoşgiha ketime ta ez gihame yê dawî heryekî ji xwere çil parçe jê çêkirbûn yê dawî çil balyoz ji kêra min çêkirbûn û daye destê min. Min li kêra xwe meyzand min dî va biqasî serê derziyê ji kêra min çûye ewjî ku mirov di kêrade ne pesporbê mirov lê naynê der ku tiştek ji vê kêrê çûye.. bi kinayî min bihtir ji çariyekî li kêrê meyzan diye ta ku min lê aniye derva ev kêr tiştek jê çûye. Yabo evin kêr ma kêrê wejî kêrin hûn bi serê xwe kin we kêrê weka kêra bavê Hisên dîtine rastî bêjin fedî nekin.....

## Xeleka (11)

Ka ezê viya dî ji were bêjim lê nebêhûn bawer bikin û serê min bêxin belaya we haj ji xwe hebê gelek tiştê wisa di jiyanê de bi serê me hatine û me bawer kiriye û mejî di rêya xwe re piropogenda jêre kiriye lê em wateya wê nizanin û ne jî bandora wê di zanin ji me weye ku em tiştên baş ji bo miletê xwe dikin lê ew di eslê xwe de dijminatiya me dike bê ku em zanibinji ber yê ku wê ji mere dibêjê em pê hatine xapandin..Dibêjin sê bira hebûn li ser dinê li bin dinê tiştekî wan nebû ji tajîkî pêve. Rojekî hersê bira tajiyê xwe dane pey xwe û çûne nêçîrê. Kîvroşkek ji pêşiyan wan rabû tajiyê xwe berdanê dema ku tajî pey kîvroşkê ket dezîkî hevrîşim ji quna tajiyê vezîla.

Hersê bira bezîne wî deziyê bi nerix û hêja ma ne dibêjin filan tişta ha hevroşim eû li hev pêçan û li pey tajiyê xwe çûn lê Çiqas tajî çû ew dezî jê vezîla û hersê bira têxin gilok ta ku bû gilokek mezin nema hersêka karîn rajinê û tajî ji ber çavê wan winda bû kes nizanê ew tajî bi ku de çû vê dawiyê hina di got ew dezî tajî bi xwe bû ji hev vezîla û bû dezîweka ku bibe dilopek av û bi wê erdê tide de herê yan bibê bayek gerav û bi wî ezmanê vale de herê..

Hersê bira ji rexekî ve xemgîn bûn û ji rexekî ve şabûn bi wê giloka deziyê hevrîşim ji lew re hevre gotin: Ma çi sûda me ji wê tajiyê hebû salê nêçîrek di girt yan na ev giloka dezî ji mere çêtire ji tajiyê lê ka wê ji kîrebê...?

Birayê mezin ji herdû birayê xwe re got: Ez birayê weyê mezinim û komek zarokê min ê hûr hene hûn dizanin ku tiştekî min nîne bila ev giloka dezî ji min rebê ezê pê Debora zarokê xwe bi kim...? Birayê nîvê got: Nawele keko gerek hûn bi din min zarokê te ji yê min mestirin û dikarin ji xwere kar marana bikin..?

Birayê piçûk got: Na wele gerek ji min re be ez birayê pi çûkim û ez bê ji nim mal ji min re divê jin ji min re divê yê we hûn gihane jinê xwe çawe be wê Xwedê derbas bikê....?

Hersê bira li hev nekirin li ser giloka deziyê hevrîşim... Birayê mezin got: Yabo emê herkê virekî bikin vira kî mezin bê wê giloka dezî bighê wî....?!

Herdûkê dî gotin: Başe....

Birayê nîvê got: Ezê pêşî bê jim herdûka got: Yabo bêje..

Birayê nîvê got: Carekî ez ji mal derketim hingî wê rojê bihna min tengbû rêya min di kevelê min de nebû min ji xwe re got:

Ezê herim li ser xwe bigerim ta ku bihna min fere bibê ezê vegerim male.Wele ez qederekî ji gund dûr ketim. Tizbiyê min û di lib dendikê kundira di berîka min de bûn ez nizanim ew libê dendika min ji ku anîbûn ji kengî ve di berîka min de bûn ez nizanimnema tê bîra min ez nizanim xeme. ne bavê min dabûn min û ne bapîrê min lê ne xeme. Dema ku min destê xwe avête tizbiyê da ku ji berîka xwe derxim ku ji xwere bi wan bilîzim xwe mijûl bikim da ku hinekî xwe ji bîrbikim.

Tu nebê dema ku min destê xwe avêtiye tizbiyên xwe û ji berîka xwe derxistine ew libê dendikê kundira jî ji berîka min ketine bê ku hayê min jê çêbe... tizbiyê min di destê min dene û ez di çim piştî sê çar roja bihna min derket fere bû min ji xwere got: Deka ezê vegerim mal nav zarokê xwe lê dema ku ez bi şûnde vegeram... Ez çi bi bînim ew çol û bêlan ew rê û rê bar tev hatine girtin..!? Tu nebê ew liba dendika ji berîka min ketî şînbûye rê û rêbar tev hatine girtin her kundirekî bi qasî xanîkî li wê pina kundir ketiye û mirov nikarê bi rêve herê weka çiya li pêşiya min lê hatine.. Xwedê wekala hikumetê sê hezar û pênsed karker û çar hezar kemiyon anîn û şeş meha ta ku ew kundir dane hev û ew rê û rê bar vekirne ta ku ez hatime nav zarokê xwe....?!

Birayê piçûk go: keko ev bû ya te?

Bira yê nîvê got:Belê keko ev bû tu di karê ya xwe bêjê..? Yê piçûk got: Deka ezê yekî bêjim birayê mezin got: yabo tujî ya xwe bijê.

Birayê piçûk got: Mane hûn dizanin dîkekê min hebû tim li ber pencera oda min ya ku li hêla rojhilat dinêrê di mexelî. Dema ku roj dihilat rojê zû ne dida min jiber ku dîkê min li ber pencerê di mexelî ta ku roj disê bejna bilin nebûba ne dida oda min. Rojekî min li dîkê xwe meyzand min dî va pirzikek bi qasî liba nîskê li pişta dîkê min çêbûye ê hûn dizanin min çiqas haj dîkê xwe hebû. Lê dema ku min baş li pirzikê meyzand wisa piçûkbû min nekir tiştek çend roj derbasbûn ê dî nema rojê da oda min û ez di mame di xwe de. Tu nebê ewê pirzikê morala dîkê min tev xirakiriye û halê wî nema ye.

Dema ku min çav li dîkê xwe kir va di çi rewşê deye ez tirsam.. Ez çûm cem Dektor min ji dektor pirsî? Ka dermanê vê pirzikê çiye, lê mixabin Tektor tiştek nekir destê min, Nizanî min ji çend kesê dî pirsî lê kesî Nizanî dermanê wê pirzikê çiye. ez bihtir tirsam pirzika ku Dektor nizanibin dermanê wê çiye...? Min hêviyê xwe ji Dektora qutkirin ez li zilamê mezin geram gund bi gund ez di pirsim ta ku ez gihame cem apê Ceto. Çeto bi xwe temenê wî bihtir ji sed û çil asliye mane hûn dizanin min ji xwere got: Ev dermanê pirzika pişta dîkê min nasnekê kes nas nakê. Wele min jêre got: Apê Çeto pirzikek di pişta dîkêmin de çêbûye ka ez çi dermanî lê bixim wê sax bibê... Min Dektorek ne hiştiye lê kesî nizaniye dermanê wê çiye û ji min re gotine tu nas nekê kes nasnakê û wê dîkê min bimrê...

hûn dizanin ku ne ji wî dîkî bê ez nikarim razim çimkî min ji wê odê pêve nîne û xwedê ew dîk ji min re kirbû delîl li ber wê pencerê di mexelî û ne dihişt ku roj bide odê û ne di hişt yek pêşî û ne yek heywan derbasî oda min bi be.

Çeto got: Dermanê wê pirzikê goza Hindêye.

Min got: ka ezê goza Hindê ji ku bînim apê Çeto...?!

Apê Çeto got: Birazî wek tu dizanê gozê Hindê peydanabin ji çil pêncî salî ve gozê Hindê nehatine wela tê me lê ezê ji tere bêjim tê ji ku bînêheger li wir jî bi dest te neket divê tu herê Hindê û yan tê here welatî ku goza Hindê lê peyda bibê.?

Min xwe avête destê apê Çeto û jêre got ez di bextê teApê Çeto ez di bextê tedeme ji min re bêje.

Apê Çeto got: Bapîrê min hîn zarok bû ew bi bavê xwe re çûbû bajarê Amedê û li wê derê bavê wî çênîk goza Hindê jêre kirîbû bapîrê min hingî ew çêniya goza Hindê xwaribû û bapîrê min ji sed salîve miriye carê wî ji min re digot beriya ku bimrê... Divê tu herê tirba wî vekê û li ber diranê wî meyzênê dibê ku hîn hinek ji wê gozê mabê di ber diranê............

............(Dumahî.Rûp 15)

# Portrê



## Merwa Birîm

Zumbelekên baqirî di bin pêyên bê de vedibrûsîn, mîna zarokekî ku nuh li hêza pêyan haybûye, hildipekî, dînkî ewir berve nenasiyê ajotin, aramiyê dest bi alêstina qaliqê êvarê kir, û sencên tewla xatirxwestinê bi şihîna koçberan hilweşîn.

Vaye bêtirî mehekê derbas bûye, û HINGÛR xanim hîn di nexşeya dêmekî de dixebite.

Rojane herku kefkopik ji geşta westandinê vedigerî û giliyê keştiyan di guhên vê peravê de dikir, nîgeraniyê mina xortekî barûte di serê rêkokên dilê ku bi doxa evînê tenik bûye de dikir fîtefît, ciniyê ramanan di guhên sawan de dikir kurtepist.

Di deriyê xaniyê textî de bêdengiyeke awerte xwe dajot dêm, û porteqalên rojava diweşîn, tol dibûn û di reşika çavan de kom dibûn, lê bi serhişkiyeke şil û ter ku bi evîneke kûr hatiye avdan, sêkoşeyekî textî di nav qûmê de diçikand, û kevaleke ku bi dawiya xwe mebranî bidarve dikir.

Rast e nexweşiyê gav sist kiribû, lê çireya dil hîn vêketîbû, pir caran li pêş wêneyê mijûl dibû, û meya xwepeyvînê serî giran dikir:

- Tevî ku bawariya min bi palgehên xewnan tune bû, dîsa seriyê min xapand û qarmîş kir, dilê min di feqa dûmên de windabû, û neynika xewnekê girtim tenê xewnekê.

Bi dudilî carekê ahoyên çavan berdan mêrgên dêm: Ew xewn jî tu bû, lê şemaqên payîbûnê bi êş bûn, tevî vê rastiyê xwezî ew xewn goristanek ba, daku perçeyên min di çirtimên te de binax bana, daku tu zanibî çire ta dawiyê hez şewitan dina roniyê dike.

Denge zirav û tenik ji ariya kûrahiyê firî: Cendî bi çeş û xweş in, peyvên ku di tenûra evînê de hatine bijartin, dibe ku mirov jiyana xwe mina goşiyê belete bibhorîne, û di kêlîkekê de bi , wek ev çend salên dawî di jiyana min de, bûn terazû û salên temenê min ê dirêj nizanim ê kin fiç kirin, niha zarokek im xemê kevanên xwe di pişta min de qiloç kirin, temenê min çar salên gihabûnê ye, tevî ku qoriq qunaxeke an biçûkîye ke di jiyana tirî de, lê tirî berî têkçûnê bi şîrahiyê avis û giran dibe, ma ewqas ciwanî tirşe Xwedayo...? Belê gihabûn bîlêta herî buha ye bo vemirandinê, mane kêr piştî giha bûnê diranan bo stiwê goşî tûj dike..?

Dibe ku du gav di navbera min û mirinê de bin, çima, ji bo çi û kê wek tiriyê Tîrmehê tjî doşav û jiyan im?. Berê xwe da qabûşkên devqîç, bi hezaran qûm dagîr kiribûn, ew jî rojekê namayên jiyankê bûn, niha mina bajarokên ber destê sibê kavilkirî ne.

Êşekê ji nişke ve êrêşî gêwd kir, ew tevde qefiland, mina komikeke çawîr li hember eniya bê, sîberê dildêr rêbertiya krewanên bîriyê kir, û çav bûn şûnkortikên ku bi dûvstêran şewitî ne: Qumcî bi zora êgir reşahiyê ji dêmê zêr dişo, karê min zortir bû, min sibeh ji şevê diguvaşt, û şev ji sibehê didot, daku keviran ji tamarên te hilkim, ji ber ku min zanîbû di paş hişkahiya te de, qolîngek perikên xwe yên sipî dilorîne û neçare genimê xemgîniyê diniklîne, lê niha basko me, û nema ku tovên şahiyê di mista min de zîldidin, ez bûme serdemeke kevirî di nav kerwanê şaristaniyê de dikulim.

Dest avêt singê xwe wek her car: Mala valahiyê hilweşe, dermanê kîmawî mîna bajarê Nagazakî jiyanê di tamarên min de bombebaran dike. Giliyê xwe di guhên qutiya dêrmên de boş kirin, piştî demekê, hinekî ji qefilandinê vebû; Sedem pir in, bo berhevkirina dêmê te yê ku di deştên bîra min de belav bûne, berî her tiştekî bîriya bê dawî ye, û sedema dawî ew e, ku çavên min bi te bêne damirandin.

Hîngê pênûsa qurşînî kunêrên xeyala kul der kirin, bi bêlalûkên bîra çirûk vepekî, car bi car rûniştina li pêş kevalê sizayeke mezin e mîna lêvegerîna çîrokeke bûyer bi êş, wê hemû birînên rê ezber kiribûn, lê çiqas asta êşekê bilind bibe, ewqas mirov di tevizandinê de gêj dibe, di ber cavê rastê de dest sist bû, ji xwe re digot: Tim di kaşên vî çavî de helkiş min dest vale vedigerîne, bi min giran e, lê pir xweş e jî, ne hêsan bû tîmarkirina ev dêmê kovî dilo..!, tevî vê yekê jî hîn dayîka quncikên te yên tarî me, û dayîk ji mûdîbûna zarokên xwe dilteng nabe.

Di ber qîjeqîja pêlan re, bi dûrbûna sed metrî bejna jineke ciwan xuyabû herdû zarokên xwe hevotin lîstikan, bi lez berê xwe da HINGÛRê: Êvar baş.

Fermo, diya Aram . Tu çawa yî..?

Ji deh salan ve ez baniyê virekê loq û filûs dikim, herku min digot baş im, lê ezê îro wê virê riswa bikim, bila cihên peqî û qul îro rastiya xwe nîşan bidin, na na ez qet ne baş bûm, ne jî baş im.

Cerkî ez li vir bi cî bûme, û me hevdu naskirî, tu ji min re bûye têderxistinokeke, ku bi hezaran bersiv di îşikê de dişemitin, tevî vê yekê jî min nexwest ku te bi pirsan biwestînim, hin pirs strî ne, tu qet ji bîra min naweşî, mero hinekan nas dike û dixweze mina pirtûkan, melevaniyê di rûpelan de bike, kanî çend rûpelên xwe bi min de.

Bi tiliya hilavêjkê çend hevdeyên mû ku li şûn ebrwan berxwe didin misdan, dengê diya Aram bi hêminî kulên wê dipeland û av didan, keserek kûr kişand, û berê xwe da firehbûna gewrederyayê ku panî bi ristina cila şîn peqîbûn:

Tu dizanî kenê min bi çi tê? Bi mirovê ku piştî têkçûna rojê, li zêrê roniyê digere tê, mixabin derziyên biyaniyê ne tenê kevnar in, ew têrzingar in jî, û qet ji xwerina dêziyê giyên têr nabin, ez ne li ser biyaniya welêt û xaknîgariyê diaxifim, ji robûna min de şemala biyaniyeke kûr im, ta rastî xwediyê vî dêmî hatim, ewê pir li min bigere.

Hîngê peyv di gewriyê de noq bûn, û gurpînan serî hildan, tamar bûn qada cirîda hespên sor, diya Aram bala xwe da ev giyanê ku ewqas di tariya tûnêlên xemgîniyeke mezin vedige vize, xwe nêzî wê kir û bigerî-germahî hembêz kir, serî giran bû li ser milê dilovan.

Niha gotina wî bîra min dikole gava digot: (ji bilî hembêzkirinê, mirov ji her tiştekî têr dibe) hêviya min pir bilind tiştekî têr dibe) hêviya min pir bilind tiştekî têr dibe) hêviya min pir bilind bû, ku rojekê ewê seriyê min li ser gurmikê xwe yê bi birîn rawestîne, lê min nizanîbû, ku ewê serdevkê agirpijên min hilqetîne, û bi hêsanî seriyê min sêwî bê mil, bê welat bihêle.

Tu dizanî diya Aram, ev yekemîn car e, bi pênûsa qurşînî nîgar dikim, ji ber ku reng cil in kêmasiyan vedişêrin, lê pênûsa qurşînî rûtkirin e, bi dirnaqên rastiyê xwe tûj dike, dilsoziya rewş û hestan bernade.

Tu ji mêj ve nîgar dikî..?

Ji roja ku dilê min keçîniya xwe derdayî de, zanibe tê çi wateyê ku jineke mîna min ewqasî demê cûtî li ber nîgarkirina dêmekî bikerise...? Û nikaribe xwe ji tevlîbûnê vebjêre. ??

Min pir hez pozê wî dikir, poz bozbilindî ye, çendî kêfxweş dibûm gav hildiperikîm sirt û tepelên wî û şanazî têr bihin dikir, lewma min ewqas ariya pênûsa qurşînî di kêlekan de vêxist, hêja ye ku bibêjim, ez xwe diçînim di nav dirêjokiya vî dêmî de, di vê çarkoşeyê sipî de, birastî nizanim ev ez im an ew e.

Çima hûn ji hev veqetîn..?

Ev ne veqetandin e xwîşkê, emê tim bi hev re bin ma yekbûn, di hevdehelandin û serkeftin di ser vê re heye..? Gava dawiya te di tiştekî ku ewqas tu hezdikî de be, ew dibe destpêka sermediya we.

Ez jê re wek paşxênî bûm, herku seredana min dikir, dibû zarok û remikên jiyanê ku ew westandine davêtin min, dikenî bi dizîka didagirî, rojmêra wî ya derûnî bi dîwarên min ve daliqî bû û hîn, demsal û werzên şor, tirş û şêrîn jî min ezber kiribûn, lê....?

Di ber peyv û giliyên wê re, êvar şepkorî bû, herdû çav beloq bûn, hawîrdora xwe şepiland, ta gopalê tariyê ji paşela aso stand, û stêr dînkî pejiqandin riwê esîmên:

Pir giring e, ku îşev bi dawî bikim.

Diya Aram alîkariya wê kir, keval û sêkoşe derbasî hundir kirin:

Şev bimîne xweş Hingûr xanim.-> R.15 Deng jê derneket, lê awirin kûr û dûr lê barandin, û gerinjîneke sar semaya Balê li ser qermîtokê lêvan kir.

Li wê şevê ev jina ku di beroşa êşekê de kelî ye, bû qisaweta diya Aram, ji kuderê ye, kî ye, çima ewqas pêdadana dêmê wê hestan dikewîne...? Di ber xwe de got:

Dibe ku ew aliyê bi êş e ji jiyana me hemiyan, lê çiqas mirov bilind dibe gava pizotan di mista xwe de kedî dike, û bi bêdengî dibe dengê jiyaneke, ku tu ji qerebalixê têr nabe.

Ev sibeha dêmzer gunehê Cotmehê yê yekem e, roj li ser kurtanê pêleke dûr diweşwişî, mina keştiyeke ku dîrak û babirk di êrîşa rêbiran de derdane, cêşa çayê li ser zimên xemgîn e, li ser pêpelokên pêş malê li çûçkan rûnişt, darbî bê bi tenê ye, Hingûrê li vî çaxî, li bin şaxan xwe bi bahûnkên sibehê pîroz dikir:

Dibe ku di xew de be.

Herweha karê mal û zarokan ew seranserî rojê mijûl kir, mêvanine wê jî hatin, li danê êvarê carekê xwe vedizî û li pêş derî berve peravê nihêrî, Hingûr bi tenê bê keval û daniştek bû, tûrikek bi dest dabû avêt nav pêlan, û herdû zend dan hev, diya Aram herbilî çend gav avêtin, lê banga hevjînê wê ew vegerand, şev dîsa bi kar û çîrokan derbas bû, diya Aram bawer nedikir, ku sibehê cardin ji xew şiyar bibe, daku saxiya cîrana şor bike.

Wek her car sibehê soza xwe nexwer, ewir mina çirtikan li dawê civîbûn, piştî diranê zêrî yê rojê vebrûsî, diya Aram berê xwe da mala Hingûrê, destê xwe hilda ku derî bikute, matmayînê ew civiland derî vekirî ye:

Hingûr xanim...?

Piştî banga wê bê bersiv ma, derî têveda hundir vale bû, ji bilî vedenga êşekê ji her quncekî dihat, û sêkoşeyê textî wênyê portrê bi tundî hemêz kiribû, çavên diya Aram li hember kevalê çog vedan, kursî kişand têr li wêneyê nihêrî, payîzê behîvên çavan qujmirandibû, xemgîniyek e bedew jê diherikî, şivêleyeke zirav bê dawî di eniyê de hilketî bû, bû, ebrwên qalind bermayên du keloşkên BERBERî bûn:

Rast e xanima razan, poz boz bilinî ye, û lûsa balindeyan e jî.

Diya aram nikarî bû bêtir bima, derî ji nûve girt,û berê xwe da şûncivîna êvarê:

Em ne tenê koçberên cengan in, lê belê em ji êşekê penaberî kulekê dibin, ma lewma navê te Hingûr bû? Dibe ku tu hilê li sibehekê, mina kulîka cotariyan tu şîn bibî li payîzekê, an bi tavbaranekê re biweşî, daku tu qenciyê bipê.

Serê diya Aram mina gerdûnê mezin bûbû, lê vale bû ji bilî sîber û peyvên Hingûrê.

Çi pêxwas bin, çi bi xeman qelew bin roj yaqa heftan bernadin, ne jî hefte dûvê mehan berdidin, piştî demekê niştecihên malên hawîrdorê digotin miroveki biyanî li Hingûrê dipirsî, diya Aram ket gomanê, dibe ku xewdiyê dêmê ewqas hundirê Hingûrê tevdayî be, lê dîsa neçû ku saxiya hundirê male bike, her weha rêzdariyeke mezin ji taybatiya çîroka wan re digirt.

Zivisatn jî kal bû, destpêka Buharê bûyrên Payîzê di bîra diya Aram de sar kirin, di şevekê de xewa newêrek, ji ber xumirtiya ewran û şepşepa baranê ta berbangê rûnişt, lewma diya Aram dereng ji xew şiyar bû, tev peyala qehweyê derket pêş malê, royê esîman standibû, û birîna pêlan hatibû hev, daxwazeke bi hêz ew ber mala Hingûrê kişand, xênî ciwaniya xwe derdabû, lê bihna bîranînan hîn teze û biçûkbû, aramiyê xwe li hinder dilê wê girt, nêzî peravê bû, baranê qûm perçifandibû, çav li tiştekî ket:

Roj baş ey kelekvanê gewr û gewre, ma bîriya hest û êşekê tu hilgirtiye peravan, ma tu jî hatiye seredana mezargeha evînê.?

Raste Hingûrê alavên xwe radestî parzemîna şîn kirin, lê wê nizanîbû ku şîrava hestan di her tiştekî de tîr dimeye, û riya vegerê li pêşa her tiştekî vekirî ye, vaye pênûsa qurşînî vegerî, daku çîrok guf û bi dawî nebin.

## Dûmahiya: Çîroka Vira

wî de ji vê rê pêve nîne ewjî ku tu bi xwazê dîke te sax bibê... Û yan tê berê xwe bide welatê gom gomê nav Hesenû Heydera.. Wele min çû tirba bapîrê Çeto vekir û min li devê wî meyzand min dî va hîn biqasî gilokek hevîr goza Hindê wê di ber diranê wî de maye lê mirov dibêjê qey wî nûka wî ew goza Hindê xweriya siphan ji navê xwe dê re ji xwe mirov nedizanî ku ew camê miriye çû min wêneyek jêre ne girt wele li bîra min bû lê mane hiş di serê min de nema bû ji kola dîkê belekê elmode û wê pirzika li pişta wî hatî.. min wêneyê wî girtiba û niha şanî we bikire weyê qet yeqîn nedikir ku ew camêr miriye ji min bi xwe weye ku ew razaye bihna miskê jê dihat....

Wele min ew goz anî danî ser wê pirzika li ser pişta dîkê xwe. Ezjî li odê razame rojê ne da min carê roj bejnekî di di diwa bilind dibû rojê dida min ez ji xew dirabûn wê rojê mam ta êvarî lê rojê ne da min. Wele ez rabûm derketin ji derve min jixwere got: ezê li dîkê xwe meyzênim ma ez çi bibînim ... min dî hûn nebînin va dareka goza Hindê li ser pişta dîkê min şîn bûye serê wê li ezmanê hefta sekiniye. Wele ez bi darêve çûm lê ma xwezî ez neçûbam..!? Ez gihame serê darê hey ho ve bajarekî ne serî û ne binî li ser serê wê darêye.

Wele ez qederekî çûm min dî wa polîsê tirafîkê rê birîne û dengê Tirênê tê wele min xwe avête Tirênê da ku polîs min ne sekinîn û pirsa nasnamê ji min nekin çimkî ez bê nasname me û ez wek navê xwe dizanim wê polîs min bigrin li gor wan kes nizanê bezê guhê bavê min ji kuye ka bê ez ji ku hatime biyanî me dizim çeqelim muxlacîme pêxwasim birçîme ser serîme bê xwedî me.. Da ku ez ji polîsa derbas bim li Tirênê siwarbûm çûm li ser kursîkî rûniştim min dîva bapîrê Çeto wê di tirênê de li ser kursîkî rûniştiye. Çaxê ku min çav lê kir di ber min de rabû hate serê min...Birayê mezin got: bese keko bes bêje Xwedê wekalê min û tebê ev giloka dezî giha te...! **(Berdewame)**

## Pirtûkên nû çapkirî



# Pirtûka *Sofîtî an tesewif*

(Xeleka-9)

Cankurd



Ev jî ji me re diyar dike ku mirov ne ji rohniyê û ne jî ji agirî pêda bûne, û rohnî jî ji çi mirovan pêda nebûye.

Di Qurana pîroz da hatiye ku Ellah "Xwedê" rohniya asîmanan û zevînê "erdê" ye. Gava sofîtî pêxember dikin jêdera rohniyê, êdî guman li ba me çêdibe ku evana Xwedê û Muhemmed wek hevdu dibînin an wek hevdu dikin, tevî ku Xwedê di Qurana pîroz da bo pêxemberê xwe dibêje: [Ji fermanê tiştek di destê te da nîne.] (3:128) û li ciyekî dî dibêje: [Bêj: Ez ji we re ne xudanê ziyanekê an jî rêbaşdîtinekê me. Bêj: Kesek nikane min ji Xwedê biparize, û ji wî pê ve ez parizmendekî nabînim.] (73:21-22)

Gava Muhemmed, selewat û silav lê bin, wilo destpêk û paşek be, teviya rohniyî da pijiqî be, divê ew – li gor dîtina sofiyan- ji Cibraîl zanatir û agahdartir be. Lew re ewan dereweke pêda dikin, dibêjin ku gava Cibraîl hatiye bo Muhemmed, selewat û silav lê bin, da wî fêr bike Quranî kerîm, dîtiye ku ew (Muhemmed) Quranê dixwêne, Cibraîl mat dimîne û diqîre: "Ji te û bo te, ey Muhemmed!!"

Lê em giş dizanin ku Pêxember mirovekî ne xwende bû. Di dema lihevhatina Hudeybiye de ev tişt gelek diyar dibe. Nûnerên gawiran napejirînin ku di peymanê da navê Muhemmed wek pêxember bite nivisandin. Pêxember dixwaze bêjeya pêxembertiyê li ser daxaza wan ji wê peymanê sîl bike, lê nizane ew kijan bêje ye, ji pismamê xwe Elî dixwaze wê sîl bike, ew dibêje ku ew hîç ne amadeye vê yekê bike ji ber ku Muhemmed pêxembere û divê ew bêje bimîne. Pêxember ji wî dipirse, ka ew kijan bêje ye, û pişt re bi destê xwe yê pak wê sîl dike.

Di destpêka dahatina weh'î de jî gava Cibraîl tê û jê re dibêje "bixwêne!" bersîvê dide dibêje: "Ez ne xwendekarim" carek dî jêre dibêje, ew dîsa wê bersîvê dide, paşê Cibraîl bi xwe yekemîn ayeta Quranê dixwêne: [[Bixwên, Bixwên bi navê xwedayê te yê ku afirandî, mirov ji kurmikekî pêda kirî.....]]

Tevî ku di Qurana pîroz da ayetek heye (53:5-7) dibêje ku ewê fêrkiriye Cibraîlê zorhêze, Ibin Erebî, an jî yekî dî ye ji şêxên sofîtiyê, ayeta Quranê [[..û bi Quranê lezneke berî ku weh'ya bi rêya Cibraîl bê ravekirina sûret û ayetan hatiye.

[Binêre: Kibrîtê sor /Şeeranî, r. 16, çapa 1307 H.]

Di helbestek xwe da Ibin Erebî dibêje:

„Dilê min bûye pejirdarê her wêneyekê

Ew çêrgeha îsikan e û dêra evdalan e

Ew pûtxane ye û ke'beya Taîf e

Lewh'ên Tewratê ye û Mishefe, Qurane.

Ez bi ola evînê bawerim

Kuve rikêbêd wê bihêwirînin

Ol ola min e û îmana min e..."

Ew ji mirîdên xwe dixwaze ku ewan xwe bi hîç hevpeymaneke taybet ve girê nedin. Bi ser wê ve jî, ew bawer dike ku baxên herheyînê û agirê dûjehê mîna hev in, yek tiştek in, û di Fussê Musewî da, ku pareke ji pirtûka wî ya bi navê Elfusus, Fîree'wn ji hezretî Mûsa çêtir dike, tevî ku Xwedê Fîree'wn ji xwe re wek neyarekî daye xuyakirinê...

Cîlî "Gîlî" jî carina bêtir ji sofiyên din di mijara yekbûna heyînê "Wîhdetulwucûd" da pê da diçe. Ew nimûneyekê li ser dîtina xwe tîne zimên. Di helbesteke xwe de dibêje ku tevî berfê "befrê" şêweyekî taybet standiye, teherek wê ya berbiçav ji sipîbûn û sariyê heye, ew jî wilo "av" e. Mirov rastiya avbûna wê berfê dibîne, gava ew dipişife... Mirov jî wilo ye, wek avê ye, ew rastiya xwe ya berê distîne, gava bi canê xwe tev canê Xwedê dibe û cihêbûn tenê di navan da ye, wek av=Berf.

Li ser va bingeha ku Cîlî pê bawer dike, pêwîste hemî ol û hemî rêbazên olî "Şarîe't" yek bin, û raste ew serî li rêbazê hildide, lê di zanîna Rastiyê "Heqîqetê" de bawermendekî hêjaye. Ew dibîne ku gava pûtperestek pûtperestiya xwe dike, di rastîniyê da Xwedaperestiyê dike, tev mîna hev in, yek rastiyê dibînin, ew jî rastîniya Xwedê ye.

Ev bawerî xêzek sor di navbera Sofîtiyê û Islamê de dikişîne ji ber ku Islam hatiye bo rakirina pûtperestiyê û her her şêweyek pêdakirina xwedîkan li gel Xwedayê me yê tenha, yê bê zarok û bê jin û bê hevpar.

Şêx Cîlî, Iblîs "Şeytan" zanatirîn afirendên Xwedê dizane, pesna wî dide û wî pîroz dibîne... Ew di pirtûka xwe de, ya bi navê (Mirovê tavkirî- rûpel 42, birr 2) dibêje, ku Iblîs berî hatina roja dawîn "Axîretê" naye nifirkirin û ji pêşberiya Xwedayî naye bi dûrxistin. Ne dûre ku bîr û baweriyên Cîlî bi ola Ezdahî hikar bûne an jî tersî wê yekê, Sofîtiyê hikarî li ola Ezdahî kiribe, çiku di "Mishefa Reş: Qere Furqan" û "Cilwe" ya Ezdahiyan de, nêrînek nêzîk ji ya Cîlî ve di warê Iblîs da berçav dibe.

Cîlî dibêje ku dema nifir li Iblîs hatiye kirin, dilşadî û xweşîyaria wî cîhan girtiye, tijî kiriye. Jê hatiye pirsîn:"Tu çawa wilo dikî û tu ji "Hedreta îlahî" hatiye derkirin?" Iblîs bersîv daye, gotiye: "Ev kurkê han, Xwedê tenê bo min daye, ne pêriyekî nêzkirî û ne pêxemberekî şande "resûl" dikare wî bike ber xwe."

Di helbesta Ibin Elfarêd "Eltaîiye Elkubra" de, meyxane û kerxane, pûtxane û nimêjgehên Cihowan, kenîseyên Fillehan û agirperestgehên Mecûsan tev li nimêjgehên Musilmanan, tev wargehên Xweda-perestiyê ne, Xwedê ji wan deran hezdike û bi wan dilxweşe ji ber ku di wan tevan de ew Xwedê ye, ji wî pê ve di wan nimêjgehan de kesek nîne, û ew bi xwe jî Xwedapereste.

## Xwetazîkirina Sofiyan

Mêrekî musilman dikare xwe ji navê bi jor ve û ji kabê bi jêr ve tazî bike, lê ew nikare li ber xelkê bê cil derkeve. Gava kesek xwe li civatekê tazî bike, dê bêjin: Eve şêt û dîne... Eve ne îslamî tê dîtin, û dibe ku wî kesî bigirin û baş lêbidin. Şêxekî mezin ê sofiyan ku bi navê Ibrahîm bû, bi xwetazîkirinê navdar bû û navê wî lew re di dûrokê de bûye Ibrahîm El U'ryan "Ibrahîmê Tazî"...

Eşe'ranî di pirtûka Atebeqat de [Binêre çapa Ibin Şeqrûn, r. 129, birr 2] li ser Şêx Ibrahîm Elu'ryan paşku "Xwedê jê razî be" vê dibêje: "...û ji wan Şêx Ibrahîm El U'ryan derdiket ser menberê û xutbe bo wan tazî dida, digot: Sultan û Dimyat û Babelûq,Beynesewreyn û camiya Tolan, Elhemdûlîllahî rebbîla'lemîn ...xelk gelek dilxweş dibû.." be, ewan jê narevin, gava wilo bike, ji ber ku ew bo mebestek rastiyar wilo dike û peçandina reşka xwe ji ber tiştekî giringtir dihêle". [Binêre Elibrîz, Eddebax, r.43, birr2, çapa 1292 k.]

Kemşixanlî jî weliyên kiryar bi sê cûreyan bi nav dike, ew dibêje: "Rehmanî jî sê ne, û ewan li ba weh'î tazî rûniştîne û weh'yê dibihîsin û têdigihin mebestê." [Camii'l Usûl fîl Ewliya, r. 133]

## Şêx wek hovekî

Eşe'ranî li ser Şêx Xemrî dibêje ku gava seyda Mihemmed kurê Şuêb çûye ba wî dîtiye ku ew di nav bayî da rûniştiye û heft çavên wî hene, û li ser Şêx Ebû Elî dibêje:"Gava tu derbas dibî ba wî, ew serbazeke, cara din ew şêreke, cara sêyemîn ew dibe fîl, ew pença xwe davêje axê û li xelkê zêr û zîv belav dike." [Etebeqat, Birr 2, r. 80-81]

Bê guman mebest ji van gotinan ew bû ku gel ji şêx û weliyan bitirse, seriyê xwe ji wan re biçemîne, fermana wan neşikîne û her tiştekî ewan ji gel bixwazin divê gel bide wan.

Xemrî li gor hewaldana Eşe'ranî hatibû parçekirin û ew xistibûn telîzekî, roja dî gava çûn wî derxînin dîtin ku şêx candare û li wir rûniştiye.

Li ser Wehîş û Ebû Xode jî tiştin pir bê şerm û fihêt dibêje. Li gor Eşe'ranî ewana dest davêtin paşiya keç û kurên xweşik li ber dê bavên wan, lê kesekî newêrî bû bo şêx tiştek bigota.

Li ser van nebaşiyan Yûsif kurê Husênê Razî mukiriyê dike û dinivîse ku yek ji kêmaniya sofîtiyê ew têkiliya h'eram e bi jin û lawikan re.

Eşe'ranî li ser şêxê xwe Ibrahîmê U'ryan dibêje ku gava ba ji ber wî diçû, digot filan camêrî tirr kir, û bo wê gotinê jî sûnd dixwar, êdî camêr fedî dikir û nedizanî çi bêje.

Wilo em dikarin bibêjin ku şêx hem tirr dikir û hem virr dikir û bi ser de jî sûnd dixwar bo xelkê bixapîne û sûcê xwe têxîne histoyê yekî dî.

Ma Islam vê yekê minê dike û rêdide tiştekî wilo hov?!

„ Dilê min bûye pejirdarê her wêneyekê

Ew çêrgeha îsikane û dêra evdalane

Ew pûtxane ye û ke'beya Taîf e

Lewh'ên Tewratê ye û Mishefe, Qurane

Ez bi ola evînê bawerim

Kuve rikêbêd wê bihêwirînin

Ol ola min e û îmana min e..."

- Ibin E'rebî-..................... Hew

## Beyar Robarî



# Li sîngek digerim

Li sîngek digerim
Li sîngek digerim
Li ser wê, xem û derdan ji bîr bikim
Kul û keseran melhem bikim
**

Li sîngek digerim
Li sîngek digerim
Pir germ û wek ebreşînê nerm
Da kanibim serî dînim ser û rakevim
**

Li sîngek digerim
Li sîngek digerim
Derdê xwe lawî tevê par vekim
Û dilê evîndar jêre rûpel bi rûpel vekim
**

Li sîngek digerim
Li sîngek digerim
Ji min re bi mal be hertim
Nebînim tevê êş û xem
**

Ger te heye delalê sîngek wisa
Ez hevparê te me hîro berî siba.

04 - 02 - 2019

# Domerî [1]

Domerî ... domerî
Bi hovan re ticar tu narî serî
Mirovên reşheş û dirinde û serserî
Wek mirovên Dahêş wî cinawirî
Bê çek û top û tiving û niştimanperwerî
Kuştin kesên bêguneh û rêwî
Ji ber cûdabû nasmeya wan ya olî û netewî!!
Û ji xwe nepirsîn carek jibo cî ev hovîtî
Û ta kengî emê birîjin xwûn zarûzêc û sêwî
Wan ticar bawernedikir wê zû were dawî
Dawiya desthilata zulim û zordarî
Û cîhan wê teng bibe li serê wan weke rovî
Ne li bîr û bala wan bû û hevalbendê xweyî tirkî
Kû dawiya wan wê pêkbê bidestên şervanên kurdî
Lê pêkhat û me hemiya bi çavan têkçûna wan dît
Û rizgar bû Cizîra me û tevê mirovahî ji wî gurî
Ma rizgar be EFRÎNA birîndar û xelas ji destên Tirkên genî.

26 - 03 - 2019

--------------------

Domerî: الدومري

Ev têgînek kurdî ye, û ji du peyvan pêktê, ew jî ev in: (Du, merî). Berî kehreba were peydakirin, dema dibû hêvar û derva reş dibû, te du merî (du mirov) li kolan û ziqaqên bajaran ne didît.

Tirkan ji kurdan birin û Ereban ji birin û bi demê re, wisa (domerî) bilêvkirin

û bikaranîn. Lê wateya xwe nehat guhartin.

Ez bawerim 99% ji Kurdan û Ereban rastiya vê peyvê nizanin.

## Nizar Yosif



# Bendemanê dem salê

Sê demên salê çavên min têr nakin,
Li bendî rewşa payîzê ne,
Da ku tablûyê te di dîwarê dil ve danin.
Tu bi harmoniyên zengilê min
hayedar dibî,
Hezkirin di kêliya yekemîn de,
Nexşan girê dide.
Te jiyan bi telesmê bintor kiriye,
Wêneyên tîrêjên kela min,
Di neynika dilê xwe re dibînî.
Hemî xweştekên min û te,
Di navbera dilan de xwe ristine,
Bihêle bila hest di ser Gola evînê de biherikin,
Yasemin deriyê bihn a xwe li me vekin.
Bêy te xwe nabîn im tenê!
Di sayîbûnê de
Bi zelaliya dêmên te re geş dibim.
Giyanê min di canê te de dijenîne,
Yê te kûraya min di hejîne.
Mirin yê ne hezkiriyane,
Diljenîn yê dildarane.
Xelekên arezûgirtinê*
di taristanan re bihûrîn,
Hemî rê bi deşta eniya te ronî dibin.
Ku demsala zêrîn
dev û lêv girêdan
Wê hungê
Bi bê dengî
Te re mijûl im.

.........................................

***Arezû: Hîvî**



Ferhad î□mo

Selah Mihemed



# HEWLÊRA MIN

Hewlêra min
Were em sitêrên birînaxwe ,
Bi tilîkên mendala ,
Di hembêza cejnê de paqij kin .
Were em ber xwedan û kina xwe ,
Li ber dergehên azadiyê ,
Bi awaz û helbest û lavij kin .
Were em golên xwîna xwe
Li nav baxê hêviyan ,
Bi ewir û baran û mij kin .
Were Hewlêra min were ....
Were em gorên gernasa
Dibeha cejna Qurbanê ,
Bi nêrgizê sibateke biyanî
Bi gul û kulîlkên şermezar
Bi bîranînên çavên xwe raxin .
Were jib o kerwanê mêr xaza ,
Em ala rengîn ,
Ji ezmanê ser xwebûnê daxin .
Were por zêra min were ....
Were em şekirên cejin û şahiya
Bidin destê sêwiya ,
Were em nalînên xwîn û dûmanê
Bi ghînin guhên jin biya ,
Were em ser pêhatiyên dara jiyanê
Dîsa bidêrin ,
Li ber agirê omîd û xweziya .
Were dilêra min were ....
Were em ji girnijîna birîna xwe
Kerwanekî sor ,
Li ser riya
Paytexta azadiyê bi rêkin ,
Were em bi hêstirên sosretên xwe
Ji bo xweziyên ber avêtî çêkin
Were em bi şîrava civînên xwe
Hîm û sitûnên , qêrîna yeke mîn ,
Di nav kêlên pakrewana de lêkin .
Were sitêra min were
Were dilêra min were

*****

Hewlêra min ,
Kevoka sipî ,
Ji tabloyên wênekêşa direve ,
Û di nav dera leq û malben dê de ,
Melûl û şermîne .
Qamişloka enînê ,
Ji kelkela veşartieên dilê xwe ,
Mûmên ser xweş
Bi rondikên name û birûska ,
Diûêşe û vedimrîne .
Mehabada gulî jêkirî ,
Lavlav û hewar û kalînên xwe ,
Li ber kêlên ,
Şewket û Samî û Mihdî û Şqxewan
Rêzdike û datîne .
Amedê ....
Ameda ber xwedana û serhil danê
Ameda agir û şer û talanê ,
Li serronakên te
Di bêje û dirêse
Û baraneke şor
Ji çavên dîrokê dibarîne ....
De rabe Hewlêra min rabe ,
Rabe arî û hestiyên Qoqa ,
Ji nav kavilên ,
Dêrsim û Zêwa û Helebça ,
Rabe Hewlêra min ,
Rabe navên qurbaniyên cejnê ,
Û kuştiyên Enfala ,
Û kavilên çend hezar gund
Û termên kanî û deristana
Ji gundê biçûk re bixwîne ,
Mixabin Hewlêra min ,
Tundrêyekî bê ol ,
Bi vavê Yezdanê bê guneh ,
Tovê mirinê ,
Li kolan û sikak û gasînên kenok
Bêyî me diçîne .
De were Hewlêra min were
Were yaseyên derbas bûna bûhiştê
Ji bêrîkên xwe kujên bê hiş
Ji min û xwe re derxîne .
De were Hewlêra min were
Were sitêra min were

*****

Erê ... Hewlêra min
Ez û tu , di nav reş perdeyên ,
Sîbera çîrokek toz girtî de ,
Bûn rawist geha ,
Mak û kokên bobelata .
Kindir û werîsên sêdaran ,
Ji pêdariya me westiyan ,
Cendekên sawên Zindana ,
Li pêşiya me ,
Ber bi sitemkara ve reviyan
Lê ... xwezî ...
Yekê sibatoka sar û dîn ,
Bi ser min û te de nehata .
Xwezî ji nav pêlên ,
Xwîna Heyv û Rok û Sitêran
Ronî û tîrêja ,
Mizgîniya Yekîtiyê hilata .
Piştî çavên torîn û Hernasa
Erê Hewlêra min
Piştî navên Qehreman û mêr xaza
Ka ... ezê ji kê re bişînim
Name û hest **û** xelata .
Bawerke Hewlêra min
Nêzîk tê bibe ,
Doxa şermezariyê ,
Li ser aniya ,
Çend bend û welata .
Nêzîk wê tîpên rondikên te ,
Bêne Golan
Li ser dil û pertûk û kelata .
Erê Hewlêra min
Erê Dilêra min
Erê Sitêra min
Xwezî nûçeya sibehê , bo min nehata
Erê .... Hewlêra min

*****

*11 – 02 – 2004*

** Ev helbest di kovara – Jîn – jimar 85 – 86 sal : 2004*

*Li şamê hatiye weşan din*

** Ev helbest di kovar – Peyv – di jimar 39 sal : 2006 li dihokê hatiye weşan din*

## Umerê Naskûrê



## Rûreş im lê xanê

Rûreş im lê xanê
Navxweşê rengînê
Tu delal û naz e
Tu peytexta zeytûnê

Tu keça rûbarê
Pişt da te Hawarê
Bi Lêlûn ra bibê yek
Ta ku dijmin derê

Di te de heft navçiyan
Reco Efrîn Şeran
Cindêrês Şiyê Mabata
Bilbilê, gul in hemiyan

Çi ça çi girran
Çi deşt çi ban
Çi cem çi gol
Hemû malên kurdan

Kuda here Efrîn av e
Çem kanî û gelî zav e
Gund û bajar zengîn e
lê bi dijmin ra arav e

Derbazbû çi xaç
Talanbû çi hirç
Tu ma serbilind
Ewna çûn bê rêç

Rovî ketin rezan
Gur ewna jî paldan
Şêr bi nav şêr e
Hirç dilîzê paş perdan

Hatin bi riyên bost
Nimê dikin ser post
Dipeyvin li ser helal
Lê dikin karî pûşt

Te xwast pişt
Lê kes nabû dost
Bazar li cîhanê digerê
Lê çi tê li mist?

Dewletê nekir berxwedan?
Ka destûr ka nan?
Şam û Rum yek e
Dest ji te berdan

Ne dan te dest
Cînar bûn bê bext
Ka merca mirovatê?
Welat ket bindest

***

Bav van axan cutin
Helbst ser welêt gotin
Çayê Kurmênc axê me ye
Dujmin çi virr cûtin

Ta heft bavan dizan
Li vî çayî bûn xêzan
Ser û bin axên xwe
Qet em na din dizzan

Sesid û şêst pênc gund
Li vê axê hatin çand
Bi sed salan diparizin
Û kesî nikanî bistand

Binire ta tê xuyan
Ew deşt û vê çiyan
Her yek çêrok distrînê
Awazê şer û jiyan

Çiyan bi me ra dost in
Kevrê Kerr û Girrê Mizin
Hawar Boflurê Parsaxatûn
Bilêl Dêrwîş û Lêlun.

## DÎSA VAYE ADAR HATIYE!

**(Bi boneya Cejna 8ê adarê)**



### Korda Mad

Rabin, bala xwe bidinê –
Dotên Kurdistanê wê tên,
Rêz û silavan bidin wan –
Wan leheng û zane û çê!

Û Cîhan jî li ser pêyan e –
Dotên kurdan silav dike,
Li dor wana çît girtine –
Bi wan hemû serbilind in! ...

Ew çavkanîya jîyanê ne
Û mînaka mirovbûnê,
Ew sembola lehengîyê ne...
Lehengî jî – bi xwe, ew in!

Ew in hêza vê jîyanê,
Û wateya hebûna me,
Ew in hêvîya serkevtinê...
Serkevtin jî – bi xwe ew in!

Tu warekî vê jîyanê
Îro bêyî wan rêva naçe,
Di şêr da be, yan aştyê da
Yên ku pêş in, dîsa ew in...

Ew – lehengên cengên giran,
Hîmê Azadîyê datînin,
Ji bo rizgarîya gelan
Jîyana xwe nahêvşînin!

Her tiştê ku l'Kurdistanê
Îro heye, wê sibê bê,
Ew hemû jî keda wan e –
Û kedkar jî – ji xwe ew in!

Ew bingeha jîyanê ne –
Fedekarên te ne, Cîhan,
Ew çavkanîya vejînê ne...
Û Jîyan jî – ew in bi xwe!

Îro cejn e – pîroz be li wan!
Rojên cejnî dîsa wê bên,
Lê ji bo ku aştî hebe,
Misogerî – dîsa ew in!

Rabe Cîhan, ca binhêre –
Ew in – dotên medî ne, tên,
Tu ji wan ra rêz bigire –
Îro her tişt l'bejna wan tê! ...

Rabe, bide tacên gulan,
Here pêşîya wan delalan,
Bila her kes baş bizanbe –
Rûspîtya te ew in, Cîhan! ...

07. 03. 2018

## Cankurd



# Welato!

Welatim, tu bihiştî,
Çîmen û kanî
Ji bo çî her belengazî,
Perîşanî...?
Wekî Perto, wekî Nacî,
Wekî Xanî...

Welatim, tu çima mayî,
Bi tenyayî, bi hawarî,
Bi fixanî...
Tu pir jarî, bi qeyranî...

Te pişt kul bû,
Ji zorbazî, Ji ber karî...
Wekî Cankurd, hemî gavan,
Birîndarî...
Li govendan,
Nenasî tu, gelek dûrî...
Wekî Qazî, wekî Simko,
Wekî Nehrî...

Welatim, tu gelek nazî
Wekî bilbil, evîndarî,
Bi nalnalî...
Dijît herdem, bi êşan
Û gelek talî...

Wekî Salim, wekî Teyran,
Wekî Nalî...

Welato, tu ji bindestî,
Ne serbestî...

Ji kovanan, sojîna dil,
giha hestî...
Tu Îhsanî, Bedirxanî,
Tu Yekdestî...

Welatim, tu navdarî,
Hem bi nîşanî...
Wekî Rustem, şev û rojê,
li cenganî...
Bi pêşmerge tu hêzdarî,
Tu hişyarî...

Welatê min, silava min
Li axa pak,
Li bavê Kurd,
Li rohniya, du çavên me,
Li Barzanî...

1974

## Hewar Zahir

# Rabe Bilbil

Ey Bilbilê dil birîn
Van kesera bes bikşîn
Rabe îro tu bi xwîn
Çarekê bo me bibîn

Li Îraqê li bakur
Ew setema bendekur
Top û teyare difir
Napalim û xaz li wan pir

Bes axîn û bes keser
Serê xwe rak û biner
Xwîn û talan û hinner
Li başûr ferman û şer

Rabe ser xwe pehlewan
Baska hildî li i`zman
Bi hewarkî li cîhan
Mafê kurda bi xuyan

Roja teye îro hat
Li cîhanê ev welat
Dil bi xwîn û dil şewat
Ji bo wî bike xebat

Kurdistana bin deste
Pir hejar û pir meste
Dijmin têde serbeste
Îro bi xwe şikeste

Ew dijminê koledar
Îro hişk bû lê buhar
Mane bê av gul û dar
Bilbil gazî û hewar .

17 – 2 – 1990




# Rê dûr kirin partîzana

Bela kirin jhev dûr kirin
Kerb û kîn bi dil wer kirin
Li ser min bar giran kirin
Rê dûr kirin partî zana

Li paş hiştin gelê xizan
Di xew rakirin mêrê rêzan
Birîn hiştin di bi kovan
Tim berî didan fermana

Gerdûn tev di kirin buhar
Lê di bûn gelek siwar
Û her em diman bendewar
Serî ji hespar berdidan

Ey partîzanê me kurda
Hey kaniya gelê merda
Çima îro we rê berda
Nebûn yek li tu meydana

Ger bi aştiyê hûn bakin
Navkokiya jî zû rakin
Em kurdin ji yek bav û makin
Dest bi hevdin hûn birane

Em bin destin lê ta kengî
Zîvarin û nakin dengî
Dê me derxin ji vî rengî
Welatê me kurdistana

Sed car xwedê ne razîbe
Ji her partiya bê bahîbe
Belavokê we em kuştin
Mirna we ji mer şahîbe .
22 – 10 – 1991

## Mohamed Jumaa



# Cegerxwîn

Pîroze axa te afirand gundewarê navça mêrdîn
Helbestvanê bêhempa seydayê nemir cegerxwîn
Helbestê te di wêja kurdîde kir guhertin
Û raperîn
Navê te berz û bala li nîv kurda û li rojhilatanavîn
Berdevkê bê zara bê pala û milletê hejar
Û xemgîn
Bo mafê bindest û sitembara dida bangewazî
Û qîrîn
Li dij zordar û dagirkera rûn kir xema gel kul
Û birîn
Xemxwirê çi kurdek li çi alî li dunyayê liser zemîn
Bi helbestê corbecor netewî civakî surûşt viyan
Û evîn
Rewşa gel dişopand di hemû asta di şahîya
Û di şûn û şîn
Jibo kurd wek sembola azadîyê tekoşerê navdar Hoşîmîn
Yan şikspîrê ingilîz yan helbestvanê dost derwîşê felestîn
Resm û wênê te berçavin belavkirîne ji ewrupa ta bi çîn
Pirsa niştiman liser mila hilgirt eşkere
Û diyarkir da zanîn
Tev sorgûn koçkirin derbeder xizanî
Û hejarî ew ma bi vîn
Gel pêşxist fêrkir bû bi pend û pelîn bi bîr
Û bawerî bi nerîn
Tu dîroke afsan û zanist bo gel dimîne hozanê bi jiyan
Û jîn
Tucar jibîr nabe kûr di dil navê te meyaye di nîv damar
Û xwîn.

## Elî Ebdullah kolo



# Xewn

Ji sîberek di xewê
Mi dî pêjnek virde hat
Rabûm ser xwe wek kewa
Mi lez kir bi kêferat
Ez û canê rûniştin
Li bin darê bi tebat
Mi go sipas xwedêko
Hêviya min bi cî dihat
Yara min pir giriya
Dilê min ji kok hilat
Mi go bêje çibû yar
Gote miçiqî ferat
Ez hêsira qut nakim
Heta şîn bibe welat

…………………………

2000/9/22

## Nayif Çolo



### (1)
### Şev dermanê êşa canê

Min Destên xwe
Di bin kirasê tentiyê de
Derbasî baxilê şevê kirin
Mîna zarokekî ku bêriya
Bêhna sînga diya xwe kiriye
Bê fedî
Şev dayika hestên evîndaraye
Her ku canê wan birçîdibin
Wan bi şîrê aramyê têr dike
Û
Bi Destên ji roniya heyvê
Derkûşa wan dilorîne
Bêrîkirin her wan hişyar dike
Lê belê awazên sitêrka bi
Esîmanê hêviyan re
Wan di xewa bi gotinên
Ji ferhenga geşbîniyê di
Xewre dibe
Şev dermanê êşa canê gotina ye
Ku
Bi rojê re li ser lêvan birîndar dibin
Û
Li ser texên bêdengiyê saxlem
Dibin .

### (2)
### Ez mam dîlê dudiliya dilê te!

Riwê evîna te benza xwe
Avêt
Buhara ken bengî da
Dara beledbûyî bi
Bendên berê beleteyî.
Sosina çiyayê dilgewriya bîranînên
Me
Te sûrgûnkirin hoza jibîrkirinê
Di
Zindana dilhiştiyê de
Bê pirs.
Te çadir û xêvetên dilhênikbûna peyvên me
Li hêrikên dileşiyê
Vegirtin.
Zevyên dilheyîna herdu dilên
Me
Bi tovên dilçepelî
Çandin
û bi barana bê soz
Avdan.
Seyrangeha dilbuhariya min û te
Bi
Dilbijîna rawestandinê te
Xemiland.
Ez mam dîlê dudiliya
Dilê te.
Ku min dilme hişt
Di
Malzaroka bêçariyê de.
……………………………………
Benz avêt.. تغير لونه
Bengî...العشق
Beledbbûyî...المهتدي
Beleteyî...الفاكهه الغير ناضجه
Dilgewriya... القلب طيب
Hoz...عشيره
Dilhiştî... مكسور القلب
Xêvet.... البيت الكبير الشعر
Dilhênik...سلس الحديث لين
Dilêş..المشقه النكد
Dilme....النطفه
Dilheyîn...الميل الرغبه
Dilçepelî...الظن سوء .

### (3)
### Bêrîvanim

Bêrîvanê buhara te me
Xaka welatê min
Ji guhanê sibehên adara te
Şîrê
Bedewiya rengê nefel û nêrgiza
Didoşim
Di zerika hezkirinê de
Ta canê pesindara jê vexwin
Û
Bi Sermestî helbestên cawîdakirinê
Li ser rûpelên zêrîn bi hûnin
Keryê sirûşta te bi zengilê beranê
Newrozê
Dibin awazên nûbûna şahiya
Dîrokê
Şûnwarê dimdim dibin koralê
Dengbêjê sirûda serxwebûnê .

### (4)
### Limêja mirinê

Ji her alî ve
Ehreman bi hêze
Gelo Ehoremezda bi bêhna
Xwînê hişyar nabe,
Qey carekê dengê
birîndaran
Nabe
Bangrahêliya xwenên
Ehoremezda.
Ta bi hêsrên wan destlimêj bigire
Û limêja êşa wan
Li limêjgeha dilovaniyê bike.
Dêmek ku limêjberê
Jiyanê
Li ser peyvgeha kurdan
Bi mafên wan
Destlimêj ne girtiye.

### (5)
### Ku tu ya min ba

Ku tu ya min ba
Minê
Xudana hespên cirîda bi destxistina te
Bikra ava hi,na şeva şahiya dilê min û te
Minê
Feraşîna çiyayên bê kul ji tere bikra
Baweşînk di germiyana hevîna kesrê te de
Minê
Ji katijmêrê demên sehrê bidizyana
Û
Li şevên penaberiya hestên te bikrana mêvan
minê
Xelata berfê ji dergûşên rûbaran re
Di bûhareke bê xwîn de
Bikra xunava sibehên perîşaniya dilê te
Bêje erê dilber
Ma qey zînê ji memo re ne bo rasteqîn.

### (6)
### Ocaxê xeyalê

Soza tîpan bi Helbestê re
Tagirtiye
Ocaxê xeyalê bi
Hilma mûyê peyvan
Dike saxlem.
Û
Hêdî hêdî
Hevok dibin xudana
Razên jiyanê.
Ku
Ji laşên rastdaran diherke
Mîna robarekî.
Û
Canê tarûmar bûne li ser
Rêçên gomanê.
Bi ava rasteqînê av dide.

Îsmaîl Murad



# Şeva Derdan

Derdekî giran didil de daye der
li milan barekî kû her tim li ser
canekî kû ji mêj ve giyan bi şer
cengekê dike limin her her û her
....
şevekê dişevade xeyal û xeûn
baz didan ji hiş raman û hûn
limin kirin êş û birîn û derdibûn
limin kişandin keser û hardibûn
.....
mirov bitenê mîna heyvê dide ronahî
lê wernagire ji kesekî sude û bênahî
li çolan dimîne wek guran dûrî avahî
pir neçar dibe û hewar dike ya îlahî
.....
ya baş nabîne û riye nebaş dide ser
mijûl dibe bi pûçiye jiyanê ye bê ber
jibîr dike bingiha xwe mîne hov û ker
radibe dibêje ezim bi hêz û dil ceger
.....
hin hene evîn ji ware ne xeme
hin hene evîn ji ware bi dirheme
û hin hene evîn ji ware kul û xeme
rastî xweşe lê nabe li her deme
evîn xweşe lê wekî ava çeme
kî jê vexwe derman jêre neme
.....
ê min evîna min cudaye xuda daye
min jimire êş û seqem û hîn belaye
ji zaroktî maye heye îro li dil vedaye
kûr dikê cihê xwe liser can hinavaye
.....

evîna min ne bitenê yeke yan guleke
ew hemû tişte ne mêreke yan jineke
wek evîna min jîn nabe yan nujîneke
her yek evînek rastiye kû jidilan dike
.....
jîn û jiyan ewe, rêk û şope min ewe
nav û dengê min ewe, hiş û dil ewe
zor ciwan û rind ewe, xwîne dil ewe
sorgula min her ewe, nazike min ewe
......
ne tû mîne bilbile, ne tû rewşe adarê
ne tû tifinge sermile,ne tû reşe êvarê
ne tû termê şehîde,ne tû hêstirê yerê
ne tû cenge mirade,ne tû pelê çinarê
.....
tû ewe ku dijmin şikand, hilweşand
tû ewe ku al hiland û ser dil çikand
tû ewe ku azadiye me kurdan sitand
tû ewe ku zencîr ji va destan birand
....
raperînek pey yekê herdem şere
xake sordibe ji xwînê mirin sere
şehîdin wê canê xwe dane jitere
dijmin ku hat vir diçê ew venagre
.....
xakek pîroze ji neyare re goristane
cihê mêraye ji şêran re daristane
mala kurdaye ji wan re gulistane
pihişta dildare navê wê kurdistane
.....

çiye û darê wê hêlîne şervane
deşt û çemê wê jiyane şivane
gund û bajarê wê riye merdane
her deverê lê cihê kêf û seyrane
......
dîroke evîne min her zîv û zêre
ji mêj ve heye îro bi xêr û bêre
bo mirovatiyê zanîn danye jêre
ropela sipî nivîsî bi rengê şilêre
serkeftinê mezin ji cihanê re kirin
mirov ji reşiyê biser roniyê de birin
ji bin destiyê û sitimkariyê ra kirin
ji xewê û nezaniyê tev şiyar kirin
....
lê îro evîne min ne ew evîne
gerdena azad li dest de nîne
can û bedena wê tev birîne
şeve roje ji bin destiyê dinalîne
.....
ji hev ketiye sînorê bihêz
bûye listike torîk û berêz
talan bûye hevgirtin û rêz
parçe bûye lê nemaye hêz
.....
perîşane ji dijminre pir hesane
belengaze ji we re xweş nîşane
pir nexweşe bê giyane bê jiyane
melol maye wek sitêre li ezmane
......

xaynan lê kiriye qirêj û bindestî
firotin xake wê beramber ne tiştî
şewtandin nav û pertûk û zanistî
çikandin liwê şilî wek dara şikestî
.....
lê piştî payîzê baranek xweş barî
berfa zozane û wîzwîze bayê sarî
piştî bahoz û çend şevên reş û tarî
liser evîne min xunaveke hînik barî
.....
buhar hat û xemiland qurmê darê
jiyan jinûve da min û dilê vê yarê
evîna min dîse geş bu wekî carê
bêna gul û misk û xunave ji dibarê
.....
wekî her car deng veda li cîhanê
wek şêr dijmin şikand li meydanê
wek mêr bankir li şingal û kubanê
kî wek mina ez padîşahê eywanê
......
ezim yê ko ala da'işê linavçê hiland
ezim yê ko destê qirêj lixakê birand
ezim yê ko şehîd bi gulen xemiland
ezim yê ko kir soze liser xwe birand
......
evîna min dimîne her jîn dibe
kes nebê ew dimire û tinedibe
jîn dibe qet nakeve û azadibe
ala kesk û sor û zer bilindibe.

## Rêber Hebûn



# QÊRÎNÊN MÊWA

Ev feleka nepejirandinê ye
rişidbûnê ye..
ji dildaran re..
dilêrbûna azadîxwazan.
Di dilê me de buhar..
bi nivşta xwe destpê dike.
Di gavê me de..
çirûskên agir dilerizîn.
Di dilê me de sibehên nerînan hejîn.
Ji şeydabûnê pêla deryayan..
bêhin kirin .
Ji kevnê dîrokê..
tîpên me digrîn..
qêrîna helbestan di me de dimrin.
Ser kenarên hêviyan ..
wek evîndarekî hatim te.
Û ser zimîna seyranê..
evîna min e agirî.
Qereçiya min ..
rehnî ber bejna te ..
xwe tazî dike
bejna te ya dirêj
mîna darqesebê .
di elendê de.
Ser piyê berêvarê de..
helbestên min digrîn.
di tariya ramanbûnê de ..
roja min tê pişaftin.
ser nalînê..
gemiyên min derbas dibin
bi lez ber çavan ..
winda dibin
nîşanên xemên min
pistepistên bilbilên min
cêwîne..
fêr bûn ahîna malê.
Ev hebûn.
nepeniyê wê bi min de ye
û ji rodan û biveyan dagirtiye.
Ey hêsra min ..
ji dema ku tu bûyî..
zivistan bû..
Ser rêyên beyar de digrî.
Ez diçim ..
ligel minin cenceran..
ma ez derya me,
an deryayê kûr ..
rojbenda min e.
xewnên me xeniqîne
çar mîx kirî ne.
hêviyên me
di kolkê şermiyê de dijîn.
Nepenî ne navên me..
di mirinê me de
ji ber ku gorên me ..
ji rêwiyan re vekirîne .
Ber ve aliyan
em di talîzoka ku di me de..
windayî ne.
ji şoreşa sor re..
wekî evîndarekî
ji yasemînê re
ji zimîna ketîbûyî re ..
xwe ditewînim.
Bo ez dilê xwe
ji hebûnê re
vegerînim
mest bibim
gavên wê diçên bê hişyarî.
dizanim bi gerdûnê..
ramanê min şoreşeke.
hember cengan
û xapên wê yên gelevajî.
Dilê min zivistanên nalînê ne
di girnijîna min de ..
asîmanên tarîbûnê derbas dibûn.
Mala min..
dergûşa bîra zaroktiyê ye
ji destpêka wê
û çûna wê ji her perwazê .
Dergûşa xewnên yên şopên hevdû didin .
wekê çeman..
Bi nermî dilivin .
Di cîhana min e sermedî de
birîna çîrokekê ye
ber şoxa gulan de
digrî û dikene
di têniviîsa min de..
payîz sivik dirazê
û ferat
bi pelê mêwa
xemiliye .
di xwîna min de ..
diherike.
Bi êş dibriqe
ronahiya xwe..
ji xema bedewkê paş perdê..
peyda dike.
Di korera min ..
ji axdariya min ..
ji kovanê min
hemî peyvên ku li dev min.
salên windayî .
man di giyanê me de
qêrînan bi rêwîtiyê disojînin
ji gêjbûnê xwe ..
şiyar dibim .
asîmanê bêkêr û dorpêçkirî
dibînim .
Ji stêrkên me re
kovan û hêviyan
di şeva xemsariyê de
bê guftogû
em diçin
bi siberojê re bi gomanên.
Ji ber vê em dinivîsin
ji serboriyan, ji viyanê me ..
ji birîna me ya pirbêj.
Ji ahînên viyanê ..
di me de..
kovanek heye
bi dawî nabe
di helbestan de diyar dibe
pêwîste ku em bi hindek sersariya xwe
serbilind bibin
heta em hêjabin ..
zengelorên firindeyan
û ji me re ye sibe..
bo em
evîna ku tariyê bi ronahiyan ra.
hêbet bike..
raghînin.

# Çalakiya hevbeş di navbera YNKS û YNRKS de

**Helbestvana Kurd Boniye Cegerxwîn cîgera serokê (YNRKS) semînarek ligel (YNKS) li bajarê Qamişlo de li darxist, di semînarê de çêla hemî kêşeyên tore û çanda kurdî kir.**

YNRKS

Vexwendinek ji aliyê (YNRKS) û (YNKS)

Bo

**Hevdîtinekê bi nivîskara hêja re**

**Boniya Cegerxwîn**

25.03.2019

Katjimêr: 12.00

Navnîşan

Bargeha YNKS, Qamişlo,

Kolana peymangeha Hanza

**Li Benda we ne!**






Yekîtiya giştî ya Nivîskar û Rojnamevanên Kurd li Sûriyê bi alîkariya komela Hêlîn, ahenga 121 emîn ya salvegera Rojnamegriya Kurdî li dar xist, bi beşdariya beşek mezin ji rojnamevan, nivîskar, siyasetmedar, hunermend û çalakvanên kurd.

Tê de çendîn gotar û helbestên xweş hatin xwendin, û qevdek stiranên bedew ji hêla çend hunermedên Kurd ve hate guhdarkirin. Di dawî de çend kesayetiyên Kurd ji hêla Yekîtiyê ve, ji ber ked û xebata wan di ber çanda Kurdî de hatin xelatkirin.

Bavê Sîmyar

19.04.2019 Essen Elmaniya

Bo piştevaniya pêdarî û serbilindayî ya Çiyayê Kurmênc




Di bîranîna 121 saliya cejna rojnamegeriya kurdî de, û bi bîranîna 8 saliya rojnameya "Pênûsa Nû" a elektronî, û 15 saliya damezrandina

**Yekîtiya giştî a Nivîskar û Rojnamevanên Kurd li Sûriyê (YNRKS)**

û bi alîkariya **Koma Hêlîn** a çandeyî, wê mihrecaneke çandeyî, hunerî, helbestî li darkeve

**Dem: Roja Înê 19.04.2019**
**Katjimêr: 14.00 pişt nîvro**
**Navnîşan: Werder str. 13, 45138 Essen**
**Li benda we ne!**















# Pênûsa nû

## ji weşanên Yekîtiya giştî a Nivîskar û Rojnamevanên Kurd


**Sernivîser**

Ebdulbaqî Huseynî

**Derhêner**

Xorşîd Şûzî

**Desteya birêvebir**

- Boniye Cegerxwîn
- Merwan Mistefa
- Mizgîn Hesko
- Cemîl Ibrahîm
- Xorşîd Şûzî

**Ji bo hinartina berhemên kurdî :**

kurdi.penusanu@gmail.com

**Jimarên ‘’Pênûsa Nû’’ Tev ji vî Emêlî derxînin :**

www.penusanu.com